

نەوشیروان مستەفا:
**تۆمەتەکانی مام جەلال بێبەڵگەن**

3 ◀



نارین:
**نەوسنم، بەڵام زۆرخۆر نیم**

9 ◀



شارەوانی سلێمانی ڕێگرە:
**کوێستان ناتوانێ ببێتە فیتەر**

16 ◀


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA





**Deutschland 1,50 Euro** | Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

**Hejmar / Nr. 26** | 5. Çile / Januar 2010 | **www.rudaw.net**



**KURDISTANÎ ▶ 2-5**

- “Kurdistan welatê me ye jî”
- YNK û Goran ji bo Kerkûkê li hember hev in!

**JIN Û CIVAK ▶ 9**

- Hikûmet: Tundûtûjî kêm bûye Jin: Zêde bûye

**EWRÛPA ▶ 12**

- Hevseroka Keskan Claudia Roth: Vebûna AKP’ê derewên polîtîkaya Tirkiyeyê rawestand

**HEVPEYVÎN ▶ 15**

- “Emine Ayna soza hînbûna kurdî daye lê...”

**ÇAND Û HUNER ▶ 8**

- Wênekêşê National Geographic Güler: Gelê kurd stêrkên asîmanê xwe nabîne

**KESKESOR ▶ 16**

- Rûdaw li Mêrdînê ye: “Rûdaw hemû Kurdistanê tîne cem hev”




### Serokwezîrê Îraqê Nûrî Malikî bo Rûdawê:

# Hîç wateyek garantiyên DYA’yê tune ye

**Piştî erêkirina qanûna hilbijartinan aliyê ereb û kurd bi daxuyaniyên dijhev bersiva hevûdu didin. Kurd dibêjin DYA’yê garantî daye me, ereb dibejin na.**

**Bexda** – Serokwezîrê Îraqê Nûrî Malikî di daxuyaniyeke bo Rûdawê de ew yek red kir ku di derbarê cîbicîhkirina maddeya 140 a Destûra Îraqê û çareserkirina pirsgirêkên navbera Hewlêr û Bexdayê de, Amerîkayê garantî daye kurdan û got ku ”hîç wateyek garantiya DYA’yê tune ye.” Li aliyê din serokê Fraksiyona Hevpeymana Kurdistanî, Dr. Fûad Masûm got ku rêvebiriya Barack Obama garantî daye kurdan û ew garantî ji bo piştevaniya mafên kurdan e ku di destûrê de hatine destnîşankirin.



*Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî li gel serokwezîrê Îraqê Nûrî Malikî* *(Wêne: Diha)*

Di derbarê wan garantiyên DYA’yê ku berpirsên kurd dibêjin wan ev li hember erêkirina yasaya hilbijartinên Îraqê ji rêvebiriya Obama standine, Malikî got ku wî bi piştrastî tiştek di derbarê wan garantiyan de nebihîstiye: “Pirsgirêkên me bi awayekî niştîmanî wê çareser bibin. Ne tiştekî dirust e ku aliyek ji derve garantiyê bigire. Vêca ew alî DYA, yan aliyekî din ê derve be. Di sîstema dewletê de kurd beşekî bingehîn in û weke hemûyan destûr desthilatdariya wan jî teyîd dike. Lewra hîç wateyeke garantiyên DYA’yê tune ye.”

Di derbarê cîbicîkirina maddeya 140 jî Malikî got ku negehiştina dawiya maddeyê 140 girêdayî hinek pirsgirêkên navxweyî ye û wê li ser bingeha destûrê çareser bibe.

Li ser sererastkirina sînorên parêzgehan jî Malikî havîna borî li Silêmaniyê gotibû ku ew yek ne di desthilata wî, lê di ya serokatiya komarê de ye û wiha ji Rûdawê re got: “Ji bo meseleya asayîkirina rewş û çareseriya pirsgirêkên Kerkûk û navçeyên din komîteyekê hatiye avakirin û me 640 milyon dolar jî jê re terxan kirine. Pirsgirêkên din jî ku piraniya wan pirsgirêkên siruştî ne, divê li gorî destûrê çareser bibin. Ji ber ku li şûna dewleteke totalîter û dîktator, em dewleteke federal dixwazin.”

Li hember daxuyaniyên Malikî, Dr. Fûad Masûm ji Rûdawê re dûpat kir ku DYA’yê garantî daye kurdan û got ku eger mebesta Malikî bi garantiyan ew be ku ji Kongreya DYA’yê biryarek derçûbe, ew tişt tune û got: “Dema Serokê DYA’yê polîtîkaya xwe nîşan dike, ev tê wateya ku divê bawerî bi wê polîtîkayê bê kirin.” Masûm got ku daxuyaniya Serokê DYA’yê xwedî giranî ye, lê mebesta wan ne ew e ku ew dixwazin DYA destêwerdana Îraqê bike û li hember hikûmetê helwestan bigre.

### Cîgirê Serokê KCK’ê Bozan Tekin:

# Em li Nabûkoyê nadin



*Bozan Tekin* *(Wêne: Rûdaw)*

Cîgirê Serokê Koma Civakên Kurdistanê (KCK) Bozan Tekin di derbarê mijarên aktûel de pirsên Rûdawê bersivandin û got ewê ji projeya xeta gaza Nebûkoyê re astengî dernexînin û bang li DYA û welatên Ewrûpa kir ku ji bo çareseriyeke siyasî li ser dewleta Tirkiyeyê zextan bikin. Tekin di derbarê girtina DTP’ê de jî got ku ‘daxistina DTP’ê îdameke siyasî ye û qedexekirina partî an girtina serkirdekî kurd kuştina civakekê ye.

Endamê Serkirdayetiya Koma Civakên Kurdistanê Ronahî Serhed jî ji Rûdawê re got ku wan di derbarê bidawîanîna proseya şerrawestinê heta niha biryarek nedane. Serhed got “ew 30 sal in ti guhertinek di tundiya terora dewletê de nebûye. Ti çareseriyek jî di ‘vebûna demokratîk’ de tune ye.”

# Ji 5 zarokan re 305 sal

**Amed (Rûdaw) -** Dozgeriya Komarê ya Amedê, dixwaze li 5 zarokên kurd ku beşdarî merasima cenazeyê Endamê HPG’ê Orhan Aşkan li navçeya Elkê bubûn û kevir avêtibûn polîsan, 305 sal cezayê zindanê bê birrîn. Di doza li dijî zarokan de sûcdariyên şahidekî veşartî jî cîh digre. Zarokên navborî li gorî “Zagona Têkoşîna Li Dijî Terorê” (TMK) tên darezandin.



# Cesedê 200 zarokên Enfalkirî diçin Çemçemalê



*"Daxwaza me ji hikûmetê anîna gorên kesên me ye."* *(Wêne: Rûdaw)*

AKO MİHEMED ŞİWANÎ

**Kerkûk** – Li sînorê Parêzgeha Kerkûkê çend gorên komelî hatin dîtin. Komîsyoneke Pişkinînê ya Wezareta Mafên Mirovan a Îraq û Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî hewl didin gorên komelî hildin. Divê piştî serê salê, cesedê 200 zarokên Enfalkirî ji Kerkûkê bo Çemçemalê bên şandin û li aramgeha Enfalkiriyan bên veşartin.

Berpirsê Nivîsîngeha Kerkûkê ya Wezareta Mafên Mirovan a Îraqê Necîb Mihemed ji Rûdawê re ragehand ku li sînorê Qezaya Topizawe û derdora Kerkûkê, bi dehan gorên komelî hatine dîtin û niha dest bi hildana wan hatiye kirin: "Komîsyoneke pispor a ser bi Wezareta Mafên Mirovan a Îraqê û Hikûmeta Herêma Kurdistanê niha hewl didin gorên komelî hildin, lê heta niha jimara Enfalkiriyên di nav van goran de nayê zanîn."

Derbarê nasnameya qurnabiyan de jî Necîb Mihemed wiha axifî: "Kurd in û piraniya wan jin û zarok in. Lewma tê texmînkirin piraniya wan sala 1988'an de hatibin binaxkirin. Piştî rakirina tevahiya goran, ji aliyê komîsyoneke ser bi Wezareta Mafên Mirovan ve karên pêwîst tên kirin heta gihandina wan bo warê wan."

Çavkaniyeke nêzîk ji Serokê Hikûmeta Herêma Kurdistanê bo Rûdawê eşkere kir di serdana serokê hikûmetê bo bajarokê Çemçemalê di roja yekem a cejina Qurbanê de, wî soz da ji destpêka sala nû ve cesedê 200 zarokên kurd ku li Topzawe di gorên komelî de hatine dîtin bo mezargeha Enfalkiriyan li Çemçemalê bên vegerandin nemaze piştî danîna kevirê bingehîn ê goristana Enfalkiriyan li Çemçemalê.

Berpirsê Rêxistina Helwêst bo Piştevaniya Malbatên Enfalkiriyan li Qezaya Şoreş Aryan Fazil daxwiyand ku ew tenê li benda vegera ezîzên xwe ne: "Daxwaza me ji hikûmetê anîna gorên kesên me ye. Meaş û pere ne girîng in. Di serdana Dr. Berhem ya Çemçemalê de, daxwazên me hemû tenê vegerandina termên bira, bav, xwîşk û dayikên me bû, ne zêdekirina meaşên me bû. Hinek merivên me di bendewariyê de koça xwe ya dawî kirine û hinekên din jî niha bi vî derdî dinalînin."

# "Kurdistan welatê me ye jî"



*Li bin konan roja xwe destpêdikin.* *(Wêne: Rûdaw)*

AKO MİHEMED ŞİWANÎ

**Çemçemal** – 300 malbatên Qereçî yên ku li navçeyên Çemçemal, `Erbet, Silêmanî û Hacîawa ku jiyana xwe di nav konan de didomînin di nav rewşeke xirab de ne. Dema ku mirov ber bi konên wan de derbas dibe çend zarokên pêxwas û jinên rû qermiçî liber tîşkên tavê bi reng û zimanekî cuda derdikevin pêşiya mirov. Ew dûrî pencere û dergeh li bin konan roja xwe destpêdikin. Ger mirov derbasî hundirê konên wan bibe wê demê hest û wijdaniya mirovatiyê dilive. U pirsan wan ya bêbersîv: "Gelo em jî ne mirov in, çima di welatekî ewçend dewlemend de em di nav konan de dijîn?

Qereçiyên Kurdistanê xwe kurd dijmêrin û dibêjin "Kurdistan welatê me ye jî.'' Semed Xelîl ku xwe wek pisporekî dîrokî yê Eşîra Dom dide naskirin, li jêr konekî, li Qezaya Çemçemalê, behsa dîroka netewa xwe ya bê nasname dike û dibêje dîroka wan vedigere serdema Şêxê Zembîlfiroş ku şêxekî xwedî maldariyeke zêde bûye. Şêx rojekê bi rê dikeve û berê wî dikeve Kurdistanê, temaşe dike ku kesek miriye û bê cil û bergan wî dixin gora wî. Şêx dibêje; "Li mala min cil û berg zêde ne, herin hinek cilan bo wî bînin", ew jî dibêjin; " qurban tu jî bimirî her ew para te ye." Şêx li wir hemû tiştên xwe dide xelkê û dest bi çêkirina zembîlan dike û wan difroşe."

**''Navê Dom ji do hatiye"**

Herçiqas hinek çavkaniyên dîrokî dibêjin Qereçî ji Hindistanê hatine, lê li gor Semed Xelîl, êla Qereç gelek salan li gel êlên Caf, Mîran, Hesniyan û Musareşan jiyane. Qereç ji ber nebûna zevî û milkan bi koçerî jiyane. Derbarê binavkirina wan wek Qereç û Dom Semed Xelîl wiha dibêje: "Di dema xwe de pîrejineka me meşk hejandiye li navçeyê nemaze navçeya ku êla me lê bûye. Rojnamevanek diçe ba wê û ji pîrejinê re dibêje ev çiye? Pîrejin dibêje 'do ye', rojnamevan jî ji ber ku zimanê wan fam nekiriye ji wan re dibêje 'Êla Dom.' Niha jî peyva Dom yan Qereç bûye nasnav û nasnama me."

**Keçên Qereçî daxwaza kon dikin ne ya xanî**

Zûlfeqar Bilal ciwanekî 15 salî ye û nezîkî 8 mehane jin xwestiye, dibêje mahr û destnîşankirin di nav wan de tenê divê konekî xort hebe: "Li gor kevneşopên êla Qereç tu keç daxwaza xanî nake. Em li gel xelkên derve jî dizewicin û gelek keçên me ji êl û hozên din wek Eşîra Surçiyan mêr kirine û niha li cem wan dijîn."

Li gor Zûlfeqar êla Qereç bi sedemê nebûna cihê rûniştinê neviyên wan ji xwendinê bêbeş in, lewma nezanî û nexwendewarî pêşeroja 300 malbatên Qereç tehdît dike û dibe asteng li pêşiya xweşbûna rewşa jiyana wan. Herçiqasî di warê zêdebûna rêjeya zarokan de, tu astengî û rêgiriyan nakin û herdem rêjeya zarokên wan zêde dibe jî, lê bê xwendingeh tên perwerde û di pêşerojê de bi sedemê nebûna bawernameyê li tu fermangehên hikmî û saziyên sivîl nayên wergirtin. Ji neçarî mêrên wan bêkar li jêr konan dimînin û jinên wan jî parsê dikin.

Semed wiha dibêje: "Qereçan jî wek kurdên din bi destê rejima Baasê de hatine îşkencekirin û li wan zulm hatiye kirin." Navbirî dibêje di dema koçberiya sala 1991'an de wan jî wek hesteke netewî konên xwe vala kirin û ketin ser rêya sînorên Îranê: "Em jî ji azar û êşan ne bê par bûn, gelek şehîdên me hene û em hatine Enfalkirin di ber doza rewa ya gelê Kurd de. Ger ne ji ber sedemê netewî bûna, emê biçûna li nav netewee din bijiyana. Wê wan jî hinek kon bidana me û dibe ku bi çavekî nizm wek niha berê xwe nedana me."

# Azadiya çapemeniyê di bin tehdîdê de ye

KAWA ŞÊX EBDULLA

**Silêmanî** – Li gor rapora dawîn ya Komîsyona Parastina Azadî û Mafên Rojnamevanan ku bi Sendîkaya Rojnamevanên Kurdistanê ve girêdayî ye, hîn jî li Kurdistanê rojnamevan rastî zext û tehdîdan tên. Lê rapor bahsa liberçavnegirtina pîvanên rojnamevaniyê ji aliyê çendîn karmendên çapemeniyê jî dike.

Li gor raporê di şeş mehên dawîn yên sala borî de li Herêma Kurdistanê li dijî rojnamevanan çar bûyerên tehdîdkirinê, du bûyerên lêdanê, 21 bûyerên binpêkirinê, sê bûyerên desteserkirinê û çar bûyerên cezakirinê hatine tomarkirin. Herwiha 35 dozên yasayî û gilînameyên cuda li dijî rojnamevanan, rojnameyan û dezgehên hikûmetê jî hatine tomarkirin.

Rapor dide zanîn ku rêjeya herî zêde ya binpêkirinên li dijî rojnamevanan di dema propaganda hilbijartinên 25'ê Tîrmeha borî li Parêzgeha Silêmaniyê pêk hatine. Rapor tekez dike ku "tevî ku di şeş mehên borî de gelek binpêkirinên cuda li dijî rojnamevanan hatine kirin jî, di heman demê de gelek kanal û rojnamevanan jî rêz li yasa û pîvanên serekî yên rojnamevaniyê negirtine."

Rapor bahsa du bûyerên lêdana karmendên çapemeniyê jî dike. Di bûyera yekem de tîmeke kanala KNN di dema kampanya hilbijartinan de di Tîrmeha borî de rastî lêdanê pasevanên Wezîrê Pêşmerge yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Şêx Cefer hatiye û di encamê de rojnamevan Aso Cemal Muxtar brîndar bûye. Di bûyera duyan de jî sernivîskarê Kovara Cîhan rastî êrişa kesên nenas hatiye û bi giranî birîndar bûye.

# YNK û Goran ji bo Kerkûkê li hember hev in!

Piştî serketina Lîsta Goran di hilbijartinên Parlamena Herêma Kurdistanê de, YNK di nava alarmê de ye ku heman qeder li Kerkûkê jî neyê serê wê.

**Kerkûk (Rûdaw)** – Serokê YNK'ê Celal Talabanî û serokê Tevgera Goran Noşîrwan Mistefa wê rasterast serpereştiya hilbijartinên meha Adara pêş yên Parlamena Îraqê li Parêzgeha Kerkûkê bikin. Tê çaverêkirin ku rekabeta herî germ a hilbijartinan di navbera Lîsta Goran û Hevpeymana Kurdistanî li Kerkûkê bi rêve herê.

Herdu lîsteyan çend kesayetiyên naskirî yên Kerkûkê û derveyî wê bo 13 kursiyên bajarê Kerkûkê kirine berendam. Lîsta Hevpeymana Kurdistanî Dr. Necmedîn Kerîmî ku hê li Amerîka ye, wek serokê lîstê destnîşan kiriye. Bi baweriya xelkê destnîşankirina Dr. Necmedîn wek serokê Lîsta Hevpeymana Kurdistanî li Kerkûkê wê bandorê li ser hejmara dengên lîstê bike.

Alîgirên Lîsteya Goran di dema hilbijartinên serokê herêmê û Parlamena Kurdistanê di 25'ê Tîrmeha borî de îdîa kirin ku YNK nanê wan dibire. Awat Mihemed ê Serokê Lîsteya Goran li Kerkûkê ye, got ku di hilbijartinên Parlamena Îraqê de tirsa birîna nanê wan tune, ji ber ku meaşê wan ji Bexdayê tê û nikare were birîn.

Hinek kes pêşbîniya wê yekê dikin ku di dema propaganda hilbijartinan de li Kerkûkê tevlîhevî derkevin. Li ser van gumanan berendamê Lîsteya Goran, Mele Ferman, wiha got: "Em naxwazin tevlîhevî li Kerkûkê derkeve ji ber di dahatû de çarenûsa me yek e. Lê divê rekabeta siyasî ya paqij hebe."

Li gor daxuyaniyên çavkaniyên Lîsteya Goran û Hevpeymana Kurdistanî wê Celal Talabanî û berpirsên din ên YNK'ê û herwiha Noşîrwan Mistefa, Mam Rostem, Celal Cewher û Osmanê Hacî Mehmud bi awayekî rasterast serpereştiya hilbijartinên Kerkûkê bikin.

Ji aliyekî din ve Hevpeymana Kurdistanî hewl dide ku sernivîskarê Rojnameya Aso, Arif Qurbanî, bike serpereştyarê ragihandinê yê kampanya hilbijartinan. Alîgirên Goran jî ji beşdarbûna Arif Qurbanî bi guman in û dibejin ku ger Arif Qurbanî tevî hilbijartinan bibe, wê pirsgirêk bo wan derkevin, ji ber ku navborî xwedî cemawerekî zêde ye li Kerkûkê. Arif Qurbanî bi xwe heta niha ti daxuyanî nedaye.

Babeteke din ku nîqaş li ser tên kirin û bûye cihê tirsê li cem rûniştvanê Kerkûkê, rola leşkerên ser bi herdu listeyan e. Rêvebirê polîsên Kerkûkê Cemal Tahir li ser vê yekê got ku polîsên Kerkûkê serbixwe kar dikin û karê wan diyar e: "Hêzên polîs bi heman helwêstê berê xwe didin hemû lîsteyan, karê me tenê parastina ewlekariya bajar e."



*Rûniştvanên Kerkûkê li benda reqabeteke germ di navbera lîsteyan de ne (Wêne: Rûdaw)*



*Kurd ji bicihkirina leşkerên Îraqî li Kerkûkê bi guman in.*

# Bexda dîsa leşker dişîne Kerkûkê

AKO MİHEMMED ŞİWANÎ

**Kerkûk** - Çavkaniyeke payebilind ji Tîpa 12 ya artêşa Îraqê li bajarê Kerkûkê ji Rûdawê re ragihand ku biryar hatiye dayîn ku bi armanca parastina ewlehiya navçeyê di dema hilbijartinên parlamenê de, tîpeke din ya artêşa Îraqê ji Kerkûkê re were şandin. Rêvebirê Polîsên Kerkûkê jî ragihand ku ti agahiyên wan ji biryarekî bi vî rengî tune.

Tîpa ku biryara şandina wê ya Kerkûkê hatiye standin, Tîpa 10 a artêşa Îraqê ye û beriya niha li bajarê Besrayê bû. Tîpa 10 dibe duyem tîpê artêşê ku li Kerkûkê tê bicihkirin, piştî ku sala borî tîpa 12 ya artêşa Îraqê ji bajarê Tikrîtê bo bajarê Kerkûkê hatibû veguhestin.

Tevî ku fermandarê Tîpa 12 ya Artêşa Îraqê li Kerkûkê, General Ebdilemîr Zeydî, amade nebû di vê derbarê de ti daxuyaniyekê bide jî, lê li gorî axaftinên çavkaniyeke haydar ji Tîpa 12 ya artêşa Îraqê bo Rûdawê, biryar hatiye standin ku Wezareta Parastinê ya Îraqê di despêka vê salê de Tîpa 10 bişîne Kerkûkê.

Rêvebirê Polîsên Kerkûkê, General Cemal Tahir, tevî ku bêhaybûna xwe ji hatina wê tîpê nîşan da jî, ragihand ku pêwîstiya wan bi hêzeke derveyî tune û ew bi xwe dikarin emniyeta bajar biparêzin û got ku eger planeke wiha hebe, ew bi guman lê dinêrin.

Çavkaniya Rûdawê gumana xwe ji ber bicihkirina tîpekî din li Kerkûkê anî ziman û got ku sala borî jî Tîpa 12 bi îdiaya şêweykî demkî ji Tikrîtê anîn Kerkûkê, lê paşê tîp li wir bi cih bû û heya niha jî venegeriyaye Tikrîtê.

**Serokê Desteya Hilberînê Hêriş Muherem:**

# Hebûna şîrketên petrolê nîşana aramiya Kurdistanê ye

Bi pêşketina aboriya Kurdistanê şîrketên biyanî jî berê xwe didin Kurdistanê. Hebûna wan şîrketan reklama herî baş e.

ELÎ HEME SALİH

**Hewlêr** - Serokê Desteya Hilberînê ya Herêma Kurdistanê Hêriş Muherem got ku cîhan di qeyraneke aborî ya mezin de derbas dibe û li seranserê dinyayê rengek ji dilgiraniyê di warê bikaranîna pereyan û awayê sermayedariyê de peyde bûye. Muherem balê kişand ser têkiliya bazara Kurdistanê ya bi cîhanê re û wiha got: "Şîrketên ku li Kurdistanê kar dikin beşek in ji hevkêşeya cîhanî ya li jêr bandora qeyrana aborî. Ji ber daketina nirxê petrolê butçeya Îraqê û ya Kurdistanê kêm dibe û ev yek dibe sedem ku em jî helwêsta xwe diyar bikin. Em difikirin ku çawa bikaribin butçeya xwe bi awayekî bikar bînin ku hemû ne taybet be bi Desteya Hilberînê, lewre ev barekî mezin dixe ser milê hikûmetê…"

Wek ku Hêriş Muherem tîne ziman, şîrketên biyanî amade ne bên Kurdistanê. Lê dîsa jî hinek faktoran li ber çav digrin. Wek faktorên siyasî û dixwazin bizanibin ku Kurdistan di pêşeroja Îraqê ya siyasî de çi rengî digre?"

Muherem got, di ware projeyên hilberînê de kabîneya şeşem temamkerê kabîneya pêncem. Hêriş



*Hêriş Muherem (Wêne: Rûdaw)*

Muherem di axaftina xwe de anî ziman ku di çêkirina peywendiyên li gel hinek welatan de, lazim e ew jî bikaribin berjewendiyan ji bo wan li Kurdistanê dirust bikin: "Bi parastina berjewendiyên xwe ew jî dibin beşek ji parastina Kurdistanê."

Mijarekî din ku Muherem anî ziman jî li ser xaniyên ku ji alîyê sîrketan ve tên avakirin bû. Ji ber ku di derbarê wan xaniyan de hevwelatî gilî dikin, Muharrem wisa dibeje: "Dema me fikra xwe got, gelek kesan, di nav wan de wezîr jî, bi guman bûn ku hizra me serî negire, yanî veberhêner xanî dirust bike û ger dirust jî kir, kesek hebe xanî bikire. Bi her awayî me hewl da hizra xwe biçespînin û jimareke zêde ya hevwelatî bibin xwedî xanî. Dibe ku hinek kêmasî hebin, ji ber ku wezaret bi karên xwe ranabin. Me herdem gotiye ku Desteya Hilberînê cihê ti wezaretê nagire. Veberhênerê ku kar dike, xizmetguzarî dikevin ser milê wî û bi vî awayî pereyên zêde tên serfkirin." Muherem bale dikişîne ser pirraniya projeyên ku xilas bûne û niha bi rêya jeneratoran elektrîkê werdigrin: "Li gor yasayê, diviya bû hikûmet elektrîkê bo wan dabîn bike, lê belê nekir. Wek mînak ti xizmetguzarî bo Gundê Alman li Silêmaniyê nehatine kirin û şîrket bi xwe xizmetguzariyên wek karê paqijiyê, temînkirina av û elektrîkê dike û beramber vê yekê 50 hezar dînaran ji xelkê wedigire. "

Muherem di dawiya axaftina xwe de bahsa girîngiya neftê û şîrketên biyanî li Kurdistanê kir: "Petrol warekî girîng ê hilberînê ye. Karkirina wan li vir nîşana aramiya Kurdistanê ye. Guman tê de nîne ku hebûna wan li vir propaganda me li derve bihêztir dike û şîrketên din teşwîk dike ku ew jî werin li Herêma Kurdistanê kar bikin."




*Bi afîşên li seranserê bajêr, Batmanî şaredarê xwe Nejdet Atalay dixwazin.* *(Wêne: Rûdaw)*

# "Em şaredarê xwe dixwazin!"

**Batman -** Seranserê bajarê Batmanê bi wêneyên şaredarê girtî Nejdet Atalay hatiye xemilandin. Li ser afîşan bi kurdî û tirkî; "Em şaredarê xwe dixwazin!" hatiye nivîsandin. Atalay yek ji wan şaredarên kurd e ku berî çend rojan hatin girtin û hîn di zindanê de ne. Di operasyona li dijî siyasetmedar û şaredarên kurd hefta borî, 140 kes hatibûn binçavkirin û ji wan gelek kes şandibûn zindanê. Protestoyên dijî vê operasyona polîsê tirk hin jî li gelek deveran didomin.

Di operasyona dijî Koma Civaka Kurdistanê (KCK) de ku di 14'ê Nîsanê de pêk hat, 7 şaredar, hevserokê Koma Civaka Demokratîk Hatip Dicle, cîgirê serokê giştî yê Komela Mafê Mirovan (ÎHD) Parêzer Muharrem Erbey, Kevneserokê DTP'ê yê Amedê Firat Anli jî di nav de, 140 kes hatibûn girtin.

Siyasetmedarên kurd ku bi tawanbariya "endamtiya meclîsa KCK'ê ya Tirkiyeyê ne" hatin girtin ev in: Şaredarê Sûrê Abdullah Demirbaş, Şaredarê Peyasê Zülküf Karatekin, Wekîlê Şaredariya Bajarê Mezin ê Amedê Ali Şimşek, Şaredarê Êlihê Nejdet Atalay, Şaredarê Cizîrê Aydin Budak, Cîgirê Serokê Giştî yê ÎHD'ê û Serokê Şaxa ÎHD'ê ya Amedê Parêzer Muharem Erbey, Şaredarê Qoserê Ferhan Türk, Şaredarê Pirsûsê Etem Şahin, Şaredara Wêranşarê Leyla Güven, Şaredarê Wêranşarê yê berê Emrullah Cin, Şaredarê Êlihê yê berê Hüseyin Kalkan, Şaredarê Pîranê yê berê Abdullah Akengin, Midûrê Giştî yê DÎSKÎ Yaşar Sarı, Şaredarê Erxenî yê berê Nadir Bingol, xebatkarê BDP'ê Cebrail Kurt, Kordînatorê Yerel Gündem 21 Fethi Suvari, Siyasedmedar Ramazan Debe, Rêveberê GÖÇ-DER'ê Abbas Çelik, Ahmet Makas, Şaredarê Colemêrgê yê berê Kazım Kurt û Takibe Turgay.

## Serokê Giştî yê ÎHD'ê Öztürk Türkdoğan:

# "Sala 2009'an bi binpêkirina maf û azadiyan derbas bû"

**Ankara (Rûdaw) -** Serokê Giştî yê ÎHD'ê Öztürk Türkdoğan di derbarê binpêkirinên maf û azadiyan yên sala 2009'an de daxuyaniyek da çapemeniyê û got ku di sala 2009'an de bi giranî kuştinên li ser kolanan, pirsgirêka kurd û hewldanên hikûmetê yên aştiyane hatine nîqaşkirin. Türkdoğan got ku hikûmeta AKP'ê gelek tişt anîne ziman, lê di pratîkê de gav ne avêtiye: "Piştî hilbijartinên 29'ê Adarê hikûmetê yekem car pirsgirêka kurd bi fermî qebûl kiriye lê piştre wekî 'projeya yekîtiya neteweyî guhertiye. AKP'ê pirsgirêka kurd hewaleyî adliyeyê kiriye. Hikûmetê di vê çarçovê de gelek endam û rayedarên DTP'ê girtine û di dawiya salê de jî li dijî BDP'ê operasyon pêk aniye. Meclîsê jî berpirsyariya xwe ya dîrokî bi cih ne aniye û pirsgirêk ji leşker û burokrasiya sivîl re hiştiye."



*Bi hînceta ku li dijî polîsan derketiye, di sala 2009'an de li dijî bêtirî 11 hezar kesan doz hatin vekirin.*

Türkdoğan di derbarê binpêkirana mafan gelek agahî dan: "Di salekê de 18 kes bi hinceta 'hişyariya raweste' guhdar nekiriye, 46 kes jî bi awayek bê daraz hatine qetilkirin. 39 kes jî di bin çavan de û li girtîgehan mirine. Di sala 2009'an de li gorî sala 2008'an kêmtir kesan jiyana xwe ji dest daye, lê ev jî encama biryara bêçalaktiyê ya PKK'ê ye. Cardin jî di encama pevçûnên di çarçova operasyonan derketîn de 61 leşker, 7 cerdevan, 66 milîtan, 4 sivîl bi tevahî 138 kesan jiyana xwe ji dest dane. Di encama teqîna mayînan de 7 zarok, 18 sivîl, 15 leşker, milîtanek, 6 cerdevan, polîsek jî di nav de, bi tevahî 41 kesan jiyana xwe ji dest dane."

Türkdoğan gotina Serokwezîr Erdoğan a, "bila dayîk negirîn" bi bîr xist û anî ziman ku li şûna vê gotinê bi cih bîne, mînakên Spanya, Îngilîstan û Fransayê pêk bîne, dest bi polîtîkaya tasfiyekirinê kiriye. AKP'ê di sala 2007'an de Zagona Selahiyet û Wezîfeya Polîsan guherandiye û di encama vê de îşkence, binçavkirinên keyfî û qetilkirin pêk hatine. Piştî vê zagonê bi hinceta li dijî polîsan derketiye, di sala 2008'an de li dijî 11 hezar 256 kesan doz hatine vekirin, di sala 2009'an de ev hejmar derketiye 18 hezar 895 kesan.

Di warê ol û baweriyan de jî cudahiyek çênebûye: 287 kes bi boneya bawerî û nêrîna xwe hatine mahkûmkirin, 36 rojnameger hatine girtin, weşana 31 rojname û kovaran hatiye rawestandin, 66 pirtûk hatine berhevkirin, 4662 malperên înternetê hatine astengkirin."

Türkdoğan diyar kir ku di derbarê 177 zarokan de li dadgehên cezayên giran 42 doz hatine vekirin û 772 sal ceza li zarokan hatiye birîn: "Di 10 çalakiyên girseyî de 6 kes hatine kuştin, 356 kes hatine darizandin, 12 hezar 976 kes hatin binçavkirin û ji van 732 kes jî hatine girtin. Di sala 2009'an de dozên girtinê yên li hemberî 5 partiyên siyasî û komeleyê dom kirine. Girtina DTP'ê binpêkirinên mezin radixe ber çavan. 140 caran êrîş li dijî avahiyên DTP'ê pêk hatine. Li hemberî partiyên siyasî û hin saziyan ji aliyê polîs û leşkeran ve 48 serdagirtinê pêk ahtine. 45 girtiyên ku li zindanan ji ber nexweşiyên giran divê bên tahliyekirin, di girtîgehê de hatine hiştin û mafê tenduristiya wan hatiye binpêkirin. Li zindana 117 hezar 61 girtî hene. Ji vana 49 hezar 206 kes hîn jî tên darezandin û 56 hezar 885 kes jî hikûmxarî ne.

BAYRAM AYAZ

# Plandanerên provakasyona Reşadiyê niha bi serketin!



Destpêkê em sernivîsê temam bikin. Reşadiye aliyekî mijarê ye. Bi qasî Reşadiyê, rêkirina ciwanan ser kolanan û teqandina molotofan jî girîng e. Eslê xwe de sernivîsa vê mijarê divê „Plandanerên provakasyona Reşadiyê û molotofên ji bo 17cm-yan bi serketin", be.

Belê… Bi rastî piştî 15'ê meha yanzdehan li Tirkiye û Bakurê Kurdistanê gelek bûyerên balkêş qewimîn. Buyerên ku dikarî siyaseta Tirkiyeyê serûbin bikin, heta bandora xwe li ser prosesa siyasî ya li Rojhilata Navîn jî hebe. Bêguman di vê nabeynê de hêviyên gelê kurd ji bo aşitî, aramî û çareseriyeke maqûl jî dikare bo demekî bê têkdan! Ev tehlûke hê jî heye.

Ji bo ku ev qewmîn baş bên fehmkirin, hewce ye em li destpêka meha yanzdehan vegerin, awirekî bidin bûyeran.

Payiza borî gengeşeyên derbarê pêvejoya pêşîlêvekirina demokrasiyê berfereh bû û meha yanzdehan gihişt Parlamena Tirkiyeyê. Li Parlamenê di rojên 10 û 13ê mijdara 2009'an de du rûniştinên dîrokî di derbarê mijara gelê kurd de pêk hatin.

Di rûniştinên Parlamenê de helwestê DTP'ê baş bû. Gotara Ahmet Türk jî maqûl bû. Mirov wisa bawer dikir, DTP bi helwestê xwe dixwaze ji bo vê pêvejoyê destê xwe bêxe bin kevirê'. DTP hassas bû, nedixwest ji AKP û hikûmetê re zahmetiyan derxe. Da ku MHP, CHP û dezgehên wekî ordiyê û mahkemeyên bilind re firsenda êrîşan peyda nebe. AKP jî beramberê DTP'ê bi dîqet bû. Ev siyaseteka rast bû. Helbet peywendiyê herdu partiyan hertim bi hêsayî birêve nediçû. Lê DTP û AKP'ê hemberê hevdu siyaseteka nerm û ya hevdu şopandinê dimeşandin. Rojeva Tirkiyeyê bi giranî pirsa kurd û qetlîama Dersimê bû. Gengeşeyên gelek balkêş dihat kirin. Di çarçova lihevkirinan de li İmraliyê zindaneke Tipa F nû hat çêkirin û çend mahkûmên din anîn li wê derê bi cîh kirin. Ji bo aşitiyê, ji bo rawestandina şer ronahiyeke biçûk peyda bûbû. DTP bi tamdanê û bi kulekî beşdarê vê pêvejoyê hat kirin. Ji DTP'ê hêvî dihat kirin. Lê DTP di bin tadeyê de bû. Siya A. Öcalan ji ser DTP'ê ranebû. Di ser DTP'ê re şerê muhatab girtinê dihat meşandin. Hêzên statukoparez bi faktora A. Öcalan dixwestin pêvajoyê bixitimînin. Van hêzan ji aliyekî ve li dijî AKP'ê propaganda dikir, digot "Hikûmetê bi A. Öcalan re li hev hatiye, "nexşeriya Öcalan" cîbecîh dike. Ji aliyê din ve A. Öcalan xistin tevgerê û DTP felc kirin. Xwestin kurdan û AKP'ê berahevdu bidin.

Bi provakasyona İzmirê îşareta plana girtina DTP'ê hat dan. Di wan rojan de Dozgerê Komarê yê Yargitayê daxwaza darezandinê ji Dadgeha Destûrê kir. Vêca roja ku parezerên İmraliyê xebera nesaxiyê û 17 cm piçûkkirina odeya A. Öcalan gîhandin derve û xortên kurd bi molotofan derketin ser cadeyan, wê rojê pê de benikê DTP'ê siyasiyen hat kişandin. Dema ku doza DTP'ê li ser maseyê dihat axaftin, provakasyona Reşadiyê qewimî. Karê Reşadiye du wezifeyên sereke bû: Yek jê, bilezxistina dana biryara girtina DTP'ê, duyem reşkirina navê Dersimê û zûtirîn demê pêşîlêgirtina gengeşeyên derbarê qetliama Dersimê. Ev tişt hemî jî pêk hatin. Mijara Dersimê hat jî bîr kirin. CHP ya kemalist ji tengasiyekî mezin hat rizgarkirin. Piştî bûyera Reşadiyê dengê demokrat, liberal û aşitîxwazan hat birîn, biryara girtina DTP'ê xweşik nehat nirxandin.

Ev bûyerên van panzdeh bist rojên dawî qewimîn, parçeyên planekî ne û her yekê jê fonsiyonekî xwe heye. Tevgera welatperwer hewce ye bi taybetî du tiştan baş zelal bike: Kî bûyera Reşadiyê da kirin û çima? Û mijara 17 cm piçûkbûna odeya A. Öcalan û bi vî bahaneyî rêkirina xortan ser kolanan bi molotofkokteylan. Divê em qîma xwe tenê bi tiştên ku dibînin neynin, hewl bidin sedemên qewimînan tê bigihîn û aktorên wan binasin, yên ku bi zanatî ji me tên veşartin.

# Îran tevna bajarên Kurdistanê digorîne

SABİR QADİRÎ

**Sîne** – Wezareta Navxwe ya Îranê di malpera xwe ya fermî de bajarên kurdnişîn ên Rojhilatê Kurdistanê wek bajarên bi zimanê farisî û mezhebê Şiî dide nasandin. Xelkê Rojhilatê Kurdistanê jî nerazîbûna xwe pêşan didin.

Pishtî ku malpera Wezareta Navxwe ya Îranê di beşê taybet bi şaredariyan de agahiyên shash li ser bajarên Rojhilatê Kurdistanê belav kir, xelkê bajarê Seqiz û beşek ji ronakbîrên her çar parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê nerazîbûna xwe pêşan didin. Herwiha daniştvanên Seqiz bi rêya şandina name, fax û e-mailan bo Wezareta Navxwe ya Îranê berpirsên peywendîdar agahdar kirin, lewma malper neçar bû ku xeletiya xwe rast bike. Berpirsê Malpera Şarnews, Îrfan Şerîfî, ku malpereke taybet e bi bajarê Seqiz, bo Rûdawê ragehand: "Bi rêya hewldan û pêdagiriya aliyan û xelkê bajarê Seqiz ew xeletî hat sererastkirin."



*Xelkê Rojhilatê Kurdistanê* *(Wêne: Rûdaw)*

Di şopandineke Rûdawê de xuya dike ku ew xeletî ne taybet bû bi bajarê Seqiz, lê di derbarê bajarên Mehabad, Urmiyê, Pîranşar, Nexede, Şino, Xoy, Mako, Selmas û hinek bajarên din jî heman agahiyên ne dirust hatine belavkirin.

Rojnamevanê xelkê bajarê Seqiz Xalid Tewekulî kiryarên wiha bi sê sedemên serekî ve girê dide: "Yek: Li Kurdistanê grûbên lêkolînvaniyê yên taybet bi îstatîstîk û diyarkirina hejmara daniştvanên navçeyên kurdnişîn, nîn in. Du: Xemsariya parlamenterên kurd li Parlamena Îranê bo diyarkirina rawêjkaran. Sê: Bêdengî û bêhelwêstiya daniştvanê navçeyê."

Nûnerê bajarê Seqiz li Parlamenê Îranê Fexredîn Heyderî jî bêagahiya xwe di derbarê vê meseleyê de ragehand û bo Rûdawê wiha axifî: "Nizanim ji ber çi ev kar hatiye kirin, lê divê bê şopandin." Berpirsê Civata Bajarê Seqiz, Elîriza Îsmailî jî xeletiya Wezareta Navxwe ya Îranê wek tiştekî ecêb wesif kir û got ku herkes dizane ku daniştvanên Seqiz kurd in û Sunnî ne.

Çavkaniyeke nêzîk ji fraksiyona nûnerên kurd li Parlamena Îranê hewldanên bi vî awayî ji aliyê Wezareta Navxwe ya Îranê wiha rave kir: "Ev kiryar ne bi xeletî hatiye kirin û dibe ku bi mebest hatibe kirin. Ger xeletî tenê li bajarekî yan du bajaran bûye, dibû bê gotin ku ne bi mebest e."

Heşen B. yê daniştvanê bajarê Mehabadê jî dibêje ku xeletiya Wezareta Navxwe ya Îranê ne karekî nû ye: "Ger tu ji mirovekî xelkê Çabehar a Belûçistanê bipirsî ka Mehabad kurd e yan tirk, ewê bi te bikene. Lê mixabin wisa dixuye ku hêjî rayedaran ji rastiya kurdbûna parêzgeha Urmiye û bajarê Mehabad fam nekirine."

# Li Kamyaranê 70 Îhsan jidayik bûn



**Kamyaran (Rûdaw) -** Piştî darvekirina ciwanê kurd Îhsan Fetahyan, di nav mehekê de 70 zarokên ku li bajarê Kamyaran jidayikbûn navê wî wergirtin. Herçend dezgehên ewle- kariyê yên Îranê ji vê yekê dilgiran bûne jî, jiber ku navkirina zarokan yasayî ye, wan nikarîbû rê li pêşiya derxistina nasnameyên bi navê Îhsan bigrin.

Nûçeya navlêkirina zarokan bi navê Îhsan bûye cihê serbilindiya malbata Fetahyan. Bavê Îhsan, Îzetulla Fetahyan bi dilekî xemgîn ji Rûdawê re axifî: "Cihê serbilindiya me ye ku xelk navê Îhsan li zarokên xwe dike. Spasiya xelkê dikim ku niha astê hizrîna wan bilind bûye û dizanin çi bikin."

Welatparêzê kurd Îhsan Fetahyan serê sibeha roja 11.11.2009'an de li zindana bajarê Sineyê hatibû darvekirin.

# Kurd di "Deng û Reng"ê TV'yên Îranê de nînin

AZAD KURDÎ

**Sine** – Televîzyonên taybet yên her çar parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê wek parêzgehên Îranê bi ser bi dezgeha Deng û Reng a Komara Îslamî ya Îranê ne.

Lê jiber qelsiya naveroka wan temaşevanên xwe jî aciz dikin. Lewre Rojhilatê Kurdistanê zêdetir berê xwe didin televizyonên kurdî.

Îran ji gelek millet û netewan pêk tê. Bi taybetî 6 netewên sereke li Îranê hene û li parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê piraniya netewên Îranê dijîn. Li Îranê bo her parêzgehekê televizyoneke herêmî hatiye danîn.

Kafî Elewî ku 7 salan wek karmendê dezgeha Deng û Reng a Komara Îslamî ya Îranê li Parêzgeha Urmiyê xebitiye û niha li Başûrê Kurdistanê niştecih e wiha dibêje: ''Ew kanal heta bi naveroka xwe ya qels weşana xwe bidomîne û temaşevanan bidest naxin. Ne tenê deng û rengê parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê, lê yên Tehranê jî ne deng û rengê xelkê ne. Dewlet dixwaze bi vî awayî nerîn û siyasetên xwe bi zimanê kurdî li nav gelê kurd belav bike, lê kurd bernameyên wisa naxwaze."

Ji bilî berpirsyarên kanalan, piraniya karmendên televizyonên Rojhilatê Kurdistanê kurd in. Kafî Elewî wiha dibêje: "Ji bo ku xwe li cem berpirsyarên kanalê şêrîn bikin bernameyên kurdî yên baş amade nakin. Divê em jibîr nekin ku sansoreke tund li ser wan heye. Zimanê kurdî bi awayekî xirab bikar tînin û ev yek bandoreke zêde negatîf li ser ciwan û nemaze zarokên kurd dike. Lê derfetê karkirinê jî di wan kanalan de heye û taybetî jî di warê kultûrî de."

Kanalên navbirî demeke xwe ya dirêj terxan dikin bo weşandina gotarên ayetullahan û helkeftan bi taybetî mirina îmamên Şîa û helkeftên olî yên din, û vê yekê bînerên Rojhilatê Kurdistanê bi tevahî aciz kiriye.



*Li Îranê bo her parêzgehekê televizyoneke herêmî hatiye danîn.* *(Wêne: Rûdaw)*

Elewî rexne li her 4 kanalên parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê digre û gotinên xwe wiha bidawî tîne: "Pir hindik guh didin çand, ziman û wêjeya kurdî herwiha vesandina folklore û nasandina kevnewarên Kurdistanê. Wêjevan, hunermend, nivîskar û helbestvanên kurd nadin naskirin. Lewma xelkên Kurdistanê "deng û rengê" xwe di van kanalan de nabînin."

## Zimanzanên kurd li ser zaravayeke fermî lihevnekirin

# Konferansa Ziman bû qurbanê nakokiyan

ARÎ OSMAN

**Hewlêr –** Çavlirê bû ku di rûniştina dawîn ya Konferansa Ziman ku ji alî Akademiya Kurdî hatibû sazkirin,daxwiyaniyek hatiba dayin. Lê jiber ku endamên konferansê li ser destnîşankirina yek zarava lihev nekirin, daxwuyaniya encamê nehat dayin.

Rojên 21 û 23'ê Kanuna 2009'an li Hewlêrê, Akademiya Kurdî konferansek bo destnîşankirina zimanê fermî yê Herêma Kurdistanê bo hilbijartina zaraveke serekî (Kurmanciya Jor û a Jêr) lidarxist. Di konferansê de, 20 akademîsiyen û zimanzan, -10 ji kurmanciya jorîn û 10 kes ji kurmanciya jêrîn-, amade bûn. Di hersê rojên konferansê de, axaftinên beşdaran li ser dû nerînan dabeş bûbûn. Zimanzanên kurmanciya jêrîn -ku ev zarava niha li fermangehên hikûmetê tê bikaranîndixwestin ku soranî bibe zarava fermî. Nerîna dûyem jî ku nerîna her 10 pisporên kurmancîaxêv bû, ku wan jî dixwest li Kurdistanê dû zaravên fermî hebin wek kurmanciya jêr û jor. Bereya yekem zêdetir pêdagirî li ser wê yekê dikir ku ger serkirdayetiya siyasî ya kurd di helkeftên fermî de soranî bikartîne, nemaze rehmetî Mele Mistefa Barzanî û Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û serokê berê yê hikûmetê Nêçîrvan Barzanî di helkeftan de bi zarava soranî diaxifin, lewma divê ev taybetmendî liberçav bê girtin û ev yek jî bo destnîşankirina kurmanciya jêrîn wek zimanê fermî yê Kurdistanê liberçav bê girtin. Lê bereya dûyem vê yekê red dike û pêdagiriyê li ser dû zaravên fermî yên kurdî dikir û bo vê mebestê hinek welatên cîhanê yên ku bi bi dû ziman û zarav wek mînak anîn.

Piştî bidawîbûna konferansê, komîsyoneke ji 8 kesî pêk hatî hat tesbîtkirin, bo incama konferansê amade bike. Lê endamên komîsyonê lihev nekirin û daxwiyaniya encamê nehat belavkirin.

Serokê Akademiya Kurdî û Serokê Komîsyona Amadekar a Konfernasê Şefîq Qezaz di derbarê çaresernekirina pirsa zimanê fermî yê kurdî bo wiha got: "Meseleya destnîşankirina zimanê fermî karekî dijwar e û bi hemû Kurdistanê ve girêdayî ye. Em nikarin bi yek konfernasê vê pirsê yekalî bikin, Konfernasê tekez kir ku divê zaravekî kurdî yê fermî hebe. Me çaverê dikir daxwiyaniya dawî neyê belavkirin, mixabin hest dikim me baş ji hev fam nekiriye."

Navbirî piştrast kir ku di konferansê de dû nerîn hebûn,. Nerînekê daxwaza zimanê fermî dikir û nerîna din daxwaza dû zimaniyê dikir: "Armanca konferansê ne sepandina zaravekê li ser a din û kirina yekê ji wan wek zimanê fermî yê kurdî bû. Divê yek zimanê fermî yê kurdî hebe, ji ber kurd yek netewe ye, ne dû netew e."

Mamosteyê Zanîngeha Dihokê û yek ji beşdarên konferansê Kamûran Berwarî li ser vê yekê got "Li Başûrê Kurdistanê jimara kesên bi kurmanciya jor daxifin ji jimara kesên ku bi kurmanciya jêr diaxifin zêdetir e. Çawa dibe em 20 kes zaravekî li ser piraniyê de bisepînin."



*Koma akademîsyen û zimanzanên kurd li konferansê.* (Wêne: Rûdaw)

Berwarî rexne li organîzatorên konferansê jî kir ku gotibûn armanca konferansê destnîşankirina zaravê kurmanciya jêr wek zimanê fermî bû: "Wan berê biryara xwe li ser fermîkirina zarava kurmanciya jêr dabûn, lewma gotibûn ger armanca dawîn ya konferansê ne li gor xwesteka wan be, wê daxwiyaniya dawîn belav nekin."

Ji bilî zaravayên kurmanciya jor û jêrîn, zaravayên Lor, Goran û Zazakî jî di nav kurdan de hene, lê nûnerên wan zaravayan bo konferansê nehatibûn vexwendin. Bi baweriya Berwarî ev zaravayên kurdî bi vî awayî tên çewisandin:

Berwarî dirêjî da axaftina xwe û wiha got: "Akademî tenê bi navê Başûrê Kurdistanê diaxife, lê ji sedî 75'ê kurdan bi zarava kurmanciya jorîn daxifin. Jinavbirina zarava ji sedî 75'ê netewa kurd karekî dijî netewe, rewişt û exlaqê ye. Herwiha dijî zanistiyê ye jî. Divê Akademya Kurdî ji holê bê rakirin jiber nûneratiya hemû kurdan nake."

Di derbarê jimartina axaftina serkirdayetiya siyasî ya Kurdistanê li Başûrê Kurdistanê bi zaravaya kurmancî ya jêrîn wek pîvana destnîşankirina zimanê fermî, Dr. Kamûran bi tundî li dijî vê nerînê derdikeve û wiha dibêje: "Ew axaftina serkirdayetiya siyasî ya kurd bi zarava kurmanciya jêr dikin hincetek bo kirina wê wek zimanê fermî yê kurdî, vêca ger wiha be divê li Bakurê Kurdistanê jî zimanê fermî kurmancî be jiber ku Öcalan bi zarava kurmancî diaxife, lê ev kar xelet e."

Berwarî red dike ku biryareke siyasî bikaribe vê pirsgirêkê çareser bike û wek hinek kesên ji bereya yekem pêşniyar kirin parlamen vê pirsê çareser bike: "Em bi tu awayan qebûl nakin pirsa fermîkirina ziman li parlamenê bê çareserkirin jiber xelkê Silêmaniyê û Hewlêrê nikarin çarenûsa xelkê Dihokê yan yên Zaza diyar bikin. divê Akademîya Kurdî xwe ji lîstikên siyasî dûr bike."

# "Nabe arteş êrîşî me bike û em bêdeng bin"

KEMAL ÇOMANÎ

**Qendîl -** Cîgirê Serokê Koma Civakên Kurdistanê (KCK) Bozan Tekin, çûna komên aştiyê ji bo Tirkiyeyê ne tenê bandor li ser guherîna aqliyeta Tirkiyeyê li hemberî kurdan nebûye, belkî Tirkiye vêna wek "opoerasyonekê" fehm kir, Tekin da zanîn: "Pêşwaziyek germ li komên me hat kirin, vê yekê çavê dewleta Tirkiyeyê tirsand û Serokwezîrê Tirkiyeyê got, 'ev operasyon e.' Tekin herwiha diyar dike: "Çend roj piştî şandina peyamberên aştiyê, rewşa zindana Serok Apo xerabtir kirin. Lê ligel vê çendê jî dîtin ku gelê kurd her pêşde diçe, dosya DTP'ê daxistin."

Gelek medya û dezgehên Tirkiye û Herêma Kurdistanê jî, PKK'ê tawanbar dikin ku bûye sedema daxistina DTP'ê. Li gor van dîtinan PKK hemû biryarên siyasî ên hundirê DTP'ê kontrol dike. Endamê Serkirdayetiya Koma Civakên Kurdistanê Ronahî Serhed vê çendê red dike: "Têkoşîna me ya siyasî li Tirkiyeyê vedigere salên 1990'an. Heta wê demê şoreşa kurdan tenê çekdarî bû. Ji wê demê pêve partiyên siyasî jî hatin avakirin. Hemû partiyên kurd jî ku hatin damezrandin heta DTP'ê, hatin girtin." Ronahî Serhed bal kişand ser rewşa Öcalan jî û wiha axifî: "Serok Apo kerameta gel e. Vê yekê jî rewşa girtîgehê xerab kir. Rêxistina gel partiya siyasî ye, ew jî daxistin. Lewra ew 30 sal in di tundiya terora dewletê de nebûye. Tu çareseriyek jî di 'vebûna demokratîk' de tuneye."

**Muxatab diyar e**

Bozan Tekin tu çareseriyekê bê razîbûna gotûbêjkirina ligel PKK'ê an Abdullah Öcalan an BDP'ê nabîne. Lewra bi ecêbmayî li daxwiyaniyên berpirsên AKP'ê dinêre ku dibêjin, "em xelkê wek muxatab digirin." Bozan wiha diaxife: "Em û DTP û gelê kurd jî qebul dikin ku ji bo çareserkirina pirsgirêka kurd birêz Öcalan wek muxatab bê girtin. Lê Tirkiye, Serok Apo qebûl nake. Ne DTP pejirand û ne PKK. Ku ew hemû nûnerê gel in. Baş e gelekî bê nûner dibe? Li gor wan, ev tê wê wateyê ku kurd civakeke bê kesayetî ye. Ev yek li Başûrê Kurdistanê jî her wiha bû. Wextê xwe Saddam Husên bawer bû tevegera rizgarîxwaz ya gelê kurd ne muxatab e, wan caşan wek nûner muxatab digirtin ku bixwe danîbûn."

Gelek çavdêrên rewşa Tirkiyeyê û heta PKK û DTP'ê, APK'ê rexne dikin ku li hember daxistina DTP'ê tu helwêstek nîşan nedaye. Di vê derbarê de Ronahî Serhed nerînên xwe wiha tîne ziman: "AKP dikaribû hewl bide ku qanûna daxistina partiyên siyasî biguherîne. Berpirsên Dadgeha Destûra Tirkiyeyê dibêjin, wan daxwaz ji AKP'ê kirine ku qanûnan biguherînin, lê AKP'ê hewlên ciddî nedaye. Lewra ew biryar biryara AKP'ê ye jî."

Ji sala 1993'an heta niha, PKK'ê



*Ronahî Serhed* (Wêne: Rûdaw)

çendîn car agirbesta yekalî ragehandiye, dema dû salan e jî ku wê agirbestê dirêjtir dike. Li gor Bozan Tekin ew agirbesta PKK'ê tu bandorek li ser siyasetên Tirkiyeyê nebûye: "Dewleta Tirkiyeyê rojekê piştî agirbesta me li dijî DTP'ê operasyonek da destpêkirin. Çend êrîşên leşkerî anîn ser me. Ji wê demê heta niha nêzîkê 80 hevalên me hatin kuştin û zêdetirê hezar DTP'yî jî girtin." Her ji ber vê şirove û analîza PKK'ê, hin çavdêr dibêjin 'PKK agirbesta xwe nadomîne', lê Ronahî Serhed berewajî diaxife: "Hê me tu biryarek nû di vê derbarê de nedaye. Ji nîsana borî ve em di rewşa mafê parastina rewa de ne, ji bilî berxwedana rewa, me tu çalakî nekirine. Nabe arteş êrîşî me bike û em bêdeng bin."

**Em li Nebuko nadin**

Bi baweriya çavdêrên siyasî, PKK herdem li siyasetên Amerîka li Rojhilata Navîn bi guman e. Herçiqas Cîgirê Serokê Koma Civakên Kurdistanê red dike ku ew li dijî hebûna Amerîka di Rojhilata Navîn de ne, lê gumana xwe jî li hember niyetên Amerîka venaşêre: "Li beramber nermiya me, Amerîka dixwaze Tirkiyeyê bike kozika bidestxistina berjewendiyên xwe di Rojhilata Navîn de. Amerîka ji ber xatirê Tirkiyeyê dijberiya me dike. Dijberiya Amerîka giha radeya bêhurmetîkirina serkirdeyên me û tometbarkirina me bi bazirganiya narkotîkê."

Ronahî Serhed derbarê civîna sê qolî ya Amerîka, Îraq û Tirkiyeyê bi amadebûna rayedarên Hikûmeta Herêma Kurdistanê ku li Hewlêrê hat lidarxistin de jî wiha dibêje: "Eger pirsa kurd ku wek hin caran berpirsên Herêma Kurdistanê dibêjin pirsa navxweyî ye, çima Tirkiye di vê derbarê de li Hewlêrê civînan lidardixe?"

Ger pirgirêka kurd neyê çareserkirin û Amerîka û Yekîtiya Ewrûpayê jî li ser dijberiya PKK'ê berdewam bûn, gelo PKK jî dikare li berjewendiyên wan bixe, bi taybet boriyên gaza Nabûkoyê. Berî pejirandina projeyê ji aliyê YE'yê, wan nûnerê xwe şandiye Qendîlê û ew ewle û garantî ji PKK'ê wergirtine ku gefê li wê projeyê neke? Bozan Tekin pirs dike: "Çima Tirkiye binkeyên leşkerên xwe li Başûrê Kurdistanê venakişîne û çendîn binkeyên din li Kurdistanê ava kiriye? Wana hemûyan hesabê xwe heye." Tekin axaftina xwe wiha qedand: "Em ne li dijî tu kesî ne heta li berjewendiyên wan jî bixin, pêwîst e ew jî wek hêzên navdewletî li dêlva zext û guşarê bînin ser me, pêwîst e zextê bixin ser Tirkiyeyê ji bo ku mafên netewî yên kurdan bide."

**Di nav PKK'ê de cudahî nîne**

Bozan Tekin di derbarê xeberên ku medya ya tirkî de derdikeve bahsa dengên cuda yên nav PKK'ê dikin jî wiha diaxife: "Ev zanyariyên şaş û pûç in. Niha di nav serokatiya KCK'ê de, heval Karayılan, Cemil Bayık, Ronahî Serhed, Sozdar û Bozan (ez), nûneriya Konseya Serokatiyê dikin. Em di saziyekê de ne ku kes biryara xwe bi ser yê din ferz nake. Em hemû bi hevre dicivin, piştre biryareke giştî didin. Ev propagandaya medya tirk e. Rojnamevan Hasan Cemal jî ku demekî berê bi Murad Karayılan hevpeyvînek çêkiribû ew gotin kirin. Wê demê em hemû pê keniyan."

Bozan Tekin dibêje demekê di nav PKK'ê de dû nerînên cuda hebûne: "Belê ew gotin ji bo serdemekê rast bûn. Hingê Osman û hin hevalên wî daxwaza radestkirina PKK'ê dikirin. Lê PKK'ê tu demekê karekî wilo nekir. PKK ji kekî an dû kesan bihêztir e da ku bibe goriyê çend xwestekên şexsî."

## Helbestvan Ferzan Şêr:

# Ez bi helbestê şa dibim!

"Dema tîp bi hev ve dizeliqin / Peyv li ser hev diqelibin, Zîloyeke jandar / Diranê xwe di rihê dilê min de radike / Jana min dimije / Helbestan dinivîse" (Ji helbesta bi navê ' Jana Zîloyê')

SALÎHÊ KEVÎRBÎRÎ

**Stenbol -** Navê wî yê fermî Taylan Şahan Tarhan e, lê ligel temenê xwe yê ciwan, li derdorên kurdîaxêv û kurdînûs bi navê Ferzan Şêr hate naskirin. Di sala 1986'an de çavên xwe li jiyanê vekiriye. Dibistana seretayî li gund û Bişêriyê, ya navendî û lîseyê li Batmanê xwendiye. Niha li Zanîngeha Hacettepe Beşê "Kewandina Fizîkî û Rehabilîtasyonê" dixwîne .Di govara "Ajda"yê de, ya ku ji aliyê hin xwendekarên li Enqereyê dixwendin ve dihat weşandin de edîtorî kir. Di sala 2008'an de çîroka wî ya bi navê "Min bi Perên Kevokan Bifirînin", di pêşbaziya çîrokan a ku ji aliyê govarên "Tîroj" û "Evrensel Kulturê" ve hatibû organîzekirin de, "xelata yekemîniyê" wergirt. Çîrok, gotar û helbestên wî di govarên bi navê "W", "Çirûsk", "Ajda" û "Tîrojê" de weşiyan. Niha li Batmanê dijî. Kitêba yekem a Ferzan Şer, "Otopsiya Berbejnekê", çendek berê ji nav Weşanên Belkiyê, li Diyarbekirê ronahiyê dît. Kitêba dabaşa mijarê 72 rûpel e û ji 42 helbestan pêk tê.



"Behra jiyanê di civakê de veşartî ye" (Wêne: Rûdaw)

***Ferzan Şêr di nav malbateke çawa de mezin buye, ki ye, çi kes e, ji çi malbat û eşiri ye?***

Biracan, ez Ferzan Şêr; bîst û sê salî me, lê bawer bike binçavên min bi qasî terkên Kurdistanê kûr xêz girtine. Li Hezyata Barincê ya bi ser Bişêriyê ya Batmanê ye ji dayik bûme. Ji eşirtî, malbatî filan hez nakim. Wek navê xwe yê fermî, min nasnavê xwe yê feodalî jî avêtiye. Lê wekî kes, ez neviyê Cemil Beg im. Em ji mala Beyrem Begê Bişêriyê ne. Em ne wekî eşîr lê wekî malbat, arîstokrat û nîvfeodal in.

***Serpehatiya te û nivisandinê çawa destpê kir?***

2006, sala min a yekemîn a zaningehê bû. Hevalên me yên zaningehê ku xwe li çepgiriyê girê didan, bi tevahî tirkîaxêv bûn. Ev yek pir li zora min diçû. Li ser fikra vê meseleya kambax, ez pê hesiyam ku kurdiya min jî gelek qels û lawaz e. Tew bingeha min jî tûnebû jixwe. Bihara wê salê, min ferhengek û pirtûka Ahmet Aras ya bi navê "Siyabend û Xecê" stand. Roj derbas dibûn, lê ez di nav rupelan de her digevizîm, malavayên pel û hibrê nediherikîn. Min jî ji xwe re kir eks û bi ser kurdî ve çûm! Di havîna heman salê de, ez li kursên kurdî digeriyam. Di wê heyamê de, ez pêrgî Mamoste Merdan Newayî hatim. Xwedê jê razî! Camêr, li Batmanê kursa zimên vekiribû. Bi saya cenabê wî, ez gihîştim vê astê û her bi kurdî dinivîsim.

***Yekem car nivis-helbesta te kengê û di ku derê de çap bû?***

Piştî wê destpêkê, me dest bi weşandina govara 'Ajda' yê kir. Yekem car helbest û pexşanên min di govara Ajdayê de weşiyan. Lê mixabin parvekirin û birêvebirina Ajdayê zêde berdewam nekir. Govara Ajda ku bi zimanê kurdî-tirkî weşanê dikir, pênç hejmar derket.

***Nivisandin ji bo Ferzan şêr hestên çawa diafirine?***

Nivîs di navbera min û civaka min de pêwendiyeke şênber e.Di helbestên xwe de, dengê qêrîna dilê xwe û ya civakê dibînim.Carinan helbest dike ku ranekevim. Dema radikevim, min şiyar dike. Wekî desthilatdarekê li ser mejiyê min pîyase dike û tevdigere. Lê ev ji bo afirandinê ne bes e. Pêdiviyeke endezyarî heye di afirandinê de. Her wekî ku Rênas Jiyan di nivîsara xwe ya bi navê "Helbest û Îlham"ê de dibêje û digihîje encama ku helbest wekî problemên matematikî bi endeziyarî tê çareserkirin; di nivîsina min de jî çend têgehên ku her di şikarteyê de vedişêrim, hene: civak, şev, êş, taritî, tazitî... Ev tev de, ji bo hestdarêjtina min girîng in. Lê çavkaniya min a herî qewî civak e. Ji ber ku behra jiyanê di civakê de veşartî ye. Kesê bixwaze avjenî bike, divê ji pêlên civakê netirse.

***Tu ji Batmanê yî. Rewşa nivisandina bi kurdi, li Batmanê di çi astê de ye? Kesen dinivisin kêm in, zêde ne, ki û kê ne?***

Rewşa Batmanê ji hêla nivîsandinê ve, ne wek Diyarbekirê be jî, baş e. Li vî bajarê ciwan, nivîskarên ciwan hene. Lê kêmasiya mezin nebûna pirtûkfiroşên kurdî ye. Wekî cenabê te jî, jê haydar e, em hê jî pêdiviyên xwe yên zimên, ji Diyarbekirê temîn dikin. Govar û rojnameyên kurdî kêm têne firotin. Saziyên kurdî, çend heb ne tê de, tevahiya danûstandinên xwe bi zimanê tirkî dikin. Helbet ev rastî, afirêneriya kurdî qels dike.

***Kitêba te ya yekem "Otopsiya Berbejnekê"ye. Bi çend hevokan behsa vê kitêbê ji me re bike...***

Ev kitêb ji bo min, mîna coş û xiroşeke simbêlderketinê ye, mîna xewnên şeytanokî ye, mîna yekem car destgirtin ango maçîkirina keçekê ye. Her wiha hema bêje, coşa çalakiya yekem e, coşa şerê yekem e. Min di rûpela ewil de nivîsandiye; "da ku pêlek li behra kurdî zêde bibe".

***Ji bo te helbest çi ye?***

Bi rastî jî helbest ji bo min şer e ku li dijî zordarî û paşverûtiyê dimeşînim. Ji bo min hevala herî nêz e helbest. Derd, kul û şewatê dilê xwe jê re dibêjim. Gelek bîranînên min pê re hene. Dema pîr bibim -em her ji bo pîrbûnê difikirin li van tiştan- ezê van bîranînan binivîsim.

***Pirseke klasik e, ezê ji te ji bikim; di warê nivisandinê de -çi helbest, çi pexşan- ezizen ber dilê te kijane?***

Ezîza ber dilê min, helbest e! Helbest wareke din e. Bi xwe dinyayek e. Rastiya rastiyê ye helbest. Lewma jî, ji dilê mirov awazên xwe distrê. Bi ya min her tim dil ji mejî dilsoztir e û ez ji bo dilsoziyê dimirim. Ji pexşanan jî hez dikim lê ne wekî helbestê. Lê car heye ku çîrokek ji helbestê jêhatîtir dibe û dike ku ez bigirîm. Hingê ew pexşan, dikeve dewsa helbestê…




MÜSLÜM YÜCEL

## Jana Gel



Qehremanê yekemîn ê (Şıvanê Kurd ê ) Ereb Şemo, şivaneke di dema çêrandina pez de pirtûk dixwîne. Romannûsê me yê duyemîn Îbrahîm Ahmed jî, di Jana Gel`de bi qehremanên şoreşger derdikeve pêşberî me. Berî ku em derbasî Jana Gel bibin, ez dixwazim du daxûyaniyên teknîkî bidim. Ev her dû roman û ev her dû romannûsên me, ji ber jehrîkirina agahiyan a ku di salên 90'î de ji aliyê hin nivîsakaran ve hatibû belavkirin, zêde nehatine xwendin; di galgal û kurtûpistan de dihate gotin ku ev her dû romannûs ji bo destpêkê baş in, heta tenê ji destpêkek- kirinek pê ve tiştekî din tine, di warê xweşikatiyê de gelek lewaz e.

Di antolojiya wêjeyî û dîrokên wêjeyê yên hêsan ên hatine nivîsandin de, ev her dû nav, di siyê de hatibûn hiştin. Armanc jî gelekî hêsane ya rastîn, ji bo xwe derxin pêş ên ji xwe baştir li pişt çavan bihêlin. Dîroka Kurdî jî hinekî ev e, di destan de meqes bi fotografan serî jêkirin e.

Di salên 1950`yî de, Kurdistan bi tevî Îraqê di bin desthilatdariya îngilîzan de bû. Nivîskaran, behsa kesên di bin vê desthilatdariyê de li ber xwe dane kirine, portreyên mîlîtanî derxistine pêş û bi vî awayî vakanûvisî (ango dîroknûsî) ya şerê rizgariyê kirine. Peyama dixwest were dayîn hertim heman wek xwe bû: Lehengî. Lehengiya di qalkirinê de, şîret û nesîhetan dide berendamê lehengê di jiyana rastîn de. Ev nesîhet û şîret rola propagandayê dilîze.

Bi guleyan mirin, ji bo welat û niştiman çûyîna mirinê û dîsa ji bo niştiman tişta herî pir jê hes dike fedakirin mewzû û mijara bingehîn e: Polîs gule bera ser gel dide, Pirşing derdikeve ser otobûsekê deng li gel dike û evîndara wê Armanc bi şehnazî li wê temaşe dike. Tam di vê kêliyê de Pirşing bi guleyan tê kuştin. Ev mirineke îdeal û evîneke îdeal e. Li vir mijar tine, di nav awarên Şehnaz ên heskiriya xwe de ciwanek tê kuştin û bi vê mirinê peyamek tê dayîn.

Îcar Îbrahîm Ahmed, ji meydanên ku peyamên wiha tên dayîn derdikeve û weke roman peyama bi navê `Jana Gel` pêşkeş dike. Jana Gel, romanek e mirov li ser navê wê bixwîne û şîrove bike. Ziman, giyanê nivîskar û berdevkê romanê Cuwamer (di wergera Tirkî de weke Camer derbas dibe) mêreke mêrxas e ku wateya navê xwe di her aliyê jiyana xwe de hildigire. Lehengê din ê romanê Hîwa weke navê xwe di her devera di romanê de navê wî derbas dibe hêvîye û hêvî dide. Şibandineke wiha ji bo Aso jî derbas dibe; Aso tê wateya pêşerojê. Mirov dikare li kesên din ên di romanê de jî di vê çaroveyê de binêre. Lehengê romanê Cuwamer, dema ji bo dapîrekê ji Kale re bîne ji gund vediqete, tişt namîne nayê serê wî. Ew xwe di nav meşekê de dibîne, birîndar dibe, di encamê de dikeve zîndanê de; 12 sal piştre hîn dibe ku jina wî di dema welidandinê de bi tevî zaroka xwe miriye.

Di ser de jî ev mirin, roja ku Cuwamer birîndar bûye û ketiye zîndanê qewimiye. Cuwamer vê mirinê ji nameyeke ku ji biraziyê xwe Lawa distîne hîn dibe. Name tesîrdar e, jixwe belavoka romanê jî ev nameye, wiha tê gotin:

"Kale mir, di ser de jî di dema welidandinê de. Roja ku tu birîndar bû û hatî girtin bû. Bê guman sedemê mirina wan zordar û xwînmijin. Jixwe wan neheqî li te kirin. Te birîndar kirin, avêtin zîndanê û wan di wî halî de hiştin." (pl. 179)

Di romanê de mirin çêbûneke ji derve hatiye û ev du peyaman pêşkeş dike. Ya yekemîn, mirina ji aliyê dujmin ve pîrozdarkirin; bi afirîna ji mirinê derdikeve têkoşîna man û nemanê li hemû gel belavkirin û tê gotin ku ev mirin ji bo gel bi xwe ye. Ya duyemîn jî ev e: bi qalkirina mirinên trajîk, zalimî û bê-rehmiya dujmin anîne ziman. Trajediya li derdora lehengê Jana Gel hatiye nivîsandin a mirina jin û zaroka wî û di heman rojê de birîndarbûn û ketina wî ya zîndanê, navgîneke ne ji bo mirov lê jî bo siyasetê hatiye afirandin e.

Ne bêkesitiya mirovan, ne jî pirsgirêkên tendûrûstiyê yên gundî û gundên ji ber çav winda mayî heye. Tişta tenê tê xwesten were qalkirin, di her mirinê de, di her neheqiyê de balkişandina ser dîtina dujmin e. Jixwe xwendevanê romanê xelas bike, li hemberî miriyan di nav hesten berpirsyarî, êş û azarê de digevize. Tişta tenê ya ev êş dibêje heye: Şer. Plana paş a romanê jî rengîn e. Weke mînak roman diyarî Şerê Rizgariya Cezayîrê hatiye kirin û ji aliyekî ve jî di navbêra şerê rizgariya netewî ya Cezayîriyan li hemberî dagirkeriya Fransî dane û şerê Kurd didin de têkîliyek û şibandinek hatiye çêkirin. Li gel vê yekê Jana Gel romaneke rasteqîn e, heta mirov dikare bêje ku romana yekemîn a Kurdî ya rasteqîn e.

Nota dawî derbarê nivîskar de ye: Îbrahim Ahmed, bi Jana Gel tê nas kirin. Li gel vê yekê jî gelek pirtûk-çîrokên ku nivîskar ji sala 1942'an û pê ve weşandiye hene.

## Wênekêşê National Geograpic Güler:

# Gelê kurd stêrkên asîmanê xwe nabîne

Eger şanoger an jî sînemavanekî bi hunera fotoxrafê zanîbûya, wê şanogerî û sînamegeriya wî çêtir bûya. Lewra wê ronî, qadraj, çarçove û leptên xwe di çarçovê de çêtir pêk anîbûya.

ÇİYA MAZÎ

**Mêrdîn -** Selmet Güler wênekêşekî kurd e. Ew li gelek deverên cîhanê ji alî wênehezan ve tê nasîn. Selmet, di sala 1965'an de li gundê Newala Bûnisra, Hopê ji dayik bûye. Em bi vê hevpeyvîna wî ketin nava dîrok û erdnîgariya ku ji kurdan re bûye mîrat û me gelek wêne derbasî nivîsê kirin.

*Kak Selmet, ev demek dirêj e ku ez, wêneyên te di govar, rojname û pêşengehan de dibînim. Gelo tu çawa dikarî xwe bi me bidî naskirin? Wênekeşî ji bo çi? Çi te kişand vê qadê?*

*Kurd çawa li wênekêşiyê dinêrin? Jê hez dikin an na, yan jî rûmeta vê cûre hunerê çiqas heye di nava kurdan de?*

Xwaziya hebûya, lê mixabin. Ji bona ku nizanin, hunerên din jî baş pêk naynin. Eger şanogerekî zanîbûya bi fotoxrafê, wê şanogertiya wî çêtir bûya. Lewra wê ronî, qadraj, çerçove û leptên xwe di çerçovê de çêtir pêk anîbûya. Ji bona ku fotoxraf bingeha sînemayê ye, sînemavanekî ku ji fotoxrafan fam bike wê baştir sînemayê pêk werîne. Peykertraş, wê baştir peykeriyê bike. Lewra ji bona ku peykertvanî ji sedî sed li ser karê portreyê pêk nêrîn. Lê ne tenê mirovan, ew kesên ku digotin û hêj jî dibêjin; "Ezîdî bingeha me ne, koçer jiyana me ya borî ye." Nerîn û nedîtin. Xwendin û fahm nekirin. Lewma kesî negot "hun kîne, ev tiştên ku we kişandine çine?" û di tu rojname û televîzyonan de bi gel re nehate parvekirin.

*Tiştê hun dibêjin balkêş e. Ji xwe wêneyên ku di pêşengehên we de bi giştî xuya dibin; jiyana Êzdî, Sûryanî û pirani ji ya koçeran e. Hun dikarin hineki din ji vekin, ji bo çi koçer? Ji bo çi Sûryanî û Êzdî ketine ber deklanşora we?*

Dema bi tesedufî ez çûme gundekî Ezîdiyan kêmbûna zarok û pirbûna pîrekalên Ezîdî bala min kişandibû. Piştî çend çûn û hatinên min, min fahmkir ku di demeke nêz de wê Ezîdî, lê bi rastî ne tenê Êzîdî, ol û kevneşopiyên wan ku em kurd dibêjin "kevneşopiyên bav û kalên me" jî wê di vê xakê de bi dawî bibe. Lewra rewş ber bi vê yekê ve diçû. Eger keç bûya bi bûkanî, eger xort bûya bi zavatî, berê xwe didan Ewrûpa û hew vedigeriyan. Berê kalan jî ber bi gorê ve bû. Vê yekê gelek bandor li ser min kir û ez êşandim. Êşa min her çû, zêde bû. Lewra sal bi sal hejmara gundê ku ez li ser dixebitîm kêm dibûn. Lewma roj bi roj giringiya xebata min ya li ser gundê Ezîdiyan, bi min girîngtir dibû.



Dema ez çûme nava Sûryaniyên Torê û min berê lensa xwe da çavên wan û min fotoxrafên wan kişand û ez hay ji melûliya çavên pîrekalên wan bûm. Min famkir ku ez ne wan, lê ez dewsxencera kalên xwe dikşînim. Rastî eş û derdekî du alî ye jiyana koçerî têm. Dema mirov diçê cem wan û di bin konên wan de rûdine, mirov dixwaze ku jiyana koçerî her û her bidomê. Lê gava çavên mirov li zarokên wan yên ku li serên çiyan ji hertiştê vê demê bêpar in, dikeve, mirov li gotina xwe poşman dibe. Lê ne poşmaniyeke ku mirov tê venegere. Poşmaniyeke ku serê kêliyekê mirov dibe û tîne.

Serê pêşî ji bo tiştên veşartî yên ku herkesî nikarîbû wan bibîne min kişandin nav vê hunerê. Paşê xweşkarî û hêzbûna wan tiştên veşartî yên ku di nava qerkeşûnên demê de hatibûn jibîrkirin û nedikarîbûn xwe bidin nasîn. Lê min tu caran ji bo xweşkariya fotoxrafekî bi tenê, pê li deklanşora kamara xwe nekir. Ez zêdetir li pey mijaran geriyam. Çêdibe ku fotoxrafek bi tena serê xwe jî pir tiştan bêje. Lê tu fotoxraf ne wekî mijarê dikare bi berfirehî pir tiştan vebêje.

*Perwerdeya te çawa çêbû ji bo wêneyan?*

Min xwe fêrî kişandina fotoxrafan kir. Ne ku fersend hebû û ez neçûm cihên ku mirov lê perwerde dibe. Pêşî min vê yekê pir dixwest. Lê paşê ku ez xwe bi xwe fêrî kêşandina fotoxrafan bûm, min got 'baş bû ku min fersend nedî ku ez herim.' Lewra perwerdeya hunerê wek dareke bi şax û per ku mirov çiqlên wê bibire, mirovan dixê bejnekê û di yek çeviyê de dihêlê ku mirov li hunerê binere.

*Di nava hunera kurd de cihek, parek ji wêneyan re heye an na?*

Tiştên ezber, derewîn û ne ji dil, kesî û kesan nagihênin tu deran. Ji bona ku ev mijar baş bê famhkirin, ji ber ku, ji bo min pir gîring e ez ê mînakekê bidim. Di festîvala 2008'an ya Qoserê de pîşengeha min ya bi navê "sê qêrînên heftrengî" ya ku ne tenê fotoxraf, ya ku êş û kulên jinên Ezîdî, Filehê Suryanî û koçeran, bi zimanekî wêjeyî pêve hatibû pençekirin û ya fotoğrafvan Husemettin Bahçe bi navê "Êzîdî" hebû. Mirov hatin û lê tê. Bila şaş neyê famkirin, ez qala wan kesên ku fotoxrafan datînin pêşberî xwe û dibêjin "em wêneyan çêdikin" ez nakim. Ji xwe li gorî min karê ku bi vî awayî tê kirin, ji karê kopya pê ve ne tiştekî din e. Lewra huner divê ji bîra baweriyê, ji kûr-xefokên xeyalan ku pirên caran hûnermend bi xwe jî nizane bê li kuderê rastî wan tê û divê zanebûna wî pêk bê.

*Dema mirov li fotoxrafeki nêrî ya giring, divê mirov xwediyê zanistiyekê be, zanistiyeke ku mirov bêje "gelo çima dimennigara wî fotoxrafî baş e an nebaş e, yan çilo baş dibe û çawa baş nabe?"*

*Di heman demê de hun wênekêşeki govara navdar National Geograpic in ji. Ev ji we digihîne cihanê. Ev yek, wê ji bo pêşeroja kurd û Mezopotamya bibe sûdeke çawa?*

Di şert û mercên îro de mirov bi taya serê xwe nikare tiştekî bike. Lewra êdî dem dema qolektîfîyê ye, pirdengiyê ye. Lewma ji bona ku em bigihijin gelên dinê, divê em pir bibin û pirdeng bibin. Di nava kurdan de hûner û hûnermenî kêm e, yên hene û ya heye jî nayê zanîn. Ez nabêjim hemû, lê nîvê hûnermendên kurd ji bona ku bên nasîn xwe didin ber siya gunê xelkê. Ez nabêjim mafdar in, lê rastiyek jî heye, gelê kurd stêrkên asîmanê xwe nabîne, lê belê heman stêrk ku bi ger û fetlên dinê re derbasî asîmanê biyaniyan dibe, hê nû li cem wan bi qedr û qîmet dibe. Lê bila bê zanîn ku stêrê asîmanên xelkê nikarin di tariya şevan de rêberiya karwanê gelên xwe bikin û wan ji kort û reşikên şevan xelas bikin.



## Rêveberê Yekîtiya Nivîskarên Dihokê Selam Balayî:

# “Bila hemû kurd alfabeya latînî bi karbînîn!”

EVDİLA KOÇER

Yekîtiya Nivîskarên Kurd li Dihokê di sala 1971'î de hatiye damazirandin. Niha 222 endamên wan hene. Bi çalakiyên xwe yên çandî û rewşenbîrî ve hewl didin ku asta peyva kurdî bilind bikin. Yek ji rêveberê Yekîtiya Nivîskarên Kurd li Dihokê Selam Balayî di derbarê kar û barê komeleyê de ji Rûdawê re axivî. Balayî da zanîn ku çi li navxweyî çi li herêmî çi jî li navnetewî be ew her dem bizavên xwe berdewam dikin, "Armancên me yên sereke ew e ku em berdawamî kar û xebatê bikin bo wêjeya kurdî da ku pêş bikeve..."

**Parastina zimanê kurdî ji erkên me yên sereke ye**

Salam Balayî bi bîr tîne ku ji bilî çalakiyên xwe ew pirtûkên nivîskarên kurd jî çap dikin, "Ji sala 2004'î heta îro me 175 pirtûk çapkirine. Pirtûkên endamên me, yên nivîskarên ji Bakur û Ewrûpa jî di nav de ne. Parastina zimanê kurdî ji erkên me yên sereke ye û bilindkirina astê hizir û hişmendiya takekesê kurd yê afrîner yek e ji karên ku em pê radibin. Em hemû pêk ve, li her derê û her yek bi karînên xwe, dikare beşdariyê di evê bizavê de bike û rolê xwe yê dîrokî di derheq pirsa ziman, çand û edebiyata kurdî de biselmîne..."

Balayî lê zêde dike ku cara yekem di sala 2005'an de yekem festîvala Dihokê ya rewşenbîrî lidarxistine û hiştine ku gelek nivîskarên kurd û dinyayê tevlî bibin, " Ji nivîskarên Çekî bigirin heta Pena Kurd me ligel gelekan kar kirine. Niha têkiliyên me digel Komeleya Nivîskarên Swêd, Amed û Pena Kurd gelekî baş e. Bi taybetî me û Pena Kurd di sala 2004'an de ligel Komaleya Nivîskarên Amedê li vir konferansek li ser perwerde û ziman kir. Her wiha ligel Enstîtûya Kurdî ya Koln û Brûkselê jî têkiliyên me baş in. Em didin û distînin..."

Li ser fêmkirina her du alfabeyan jî Balayî dibêje ku ew hewl didin pirtûkan bi latînî çap bikin, "Em hinek pirtûkên xwe bi latînî çap dikin, berhemên nivîskarên li Bakur û Ewrûpa jî em bi tîpên erebî çap dikin da ku haya hemû nivîskaran ji hev hebe. Em dixwazin ku bêtir haya me ji van berheman hebe..."

**Bila hemû kurd alfabeya latînî bi karbînîn**

Li ser pirsgirêkên alfabe û zaravayan jî dibêje ku rastî tiştekê din e hêz jî tiştekê din e, "Eger bi min be, bila hemû kurd li her cihî tenê alfabeya latînî bi kar bînin û binivîsînin û bixwînin. Lê di pratîkê de problemek pir mezin e. Ez dibêjim dema azadiyê ye, bila her zaravayek me hebe, her kes bila bi wî zaravayî binivîsin û bixwînin. Belê bila hemû kurd kar bikin bo zaravayekî. Bo vê yekê konferansek mezin ji her çar parçeyan lazim e ku li Başûr pêk were. Ez hêvî dikim ev yek di pejerojê de pêk were..."

# **Hikûmet:** Tundûtûjî kêm bûye **Jin:** Zêde bûye




SORAN BEHAEDDÎN

**Hewlêr** – Li Kurdistanê nîqaşên di derbarê tundutûjiyê de didomin. Heta niha diyar nebûye ku gelo bi rastî li gor daneyên fermî tundûtûjî kêmbûye an jî li gor baweriyên saziyên jinan, zêde bûye?

Rêveberiya Şopandina Tundûtûjiya dijî Jinan li Wezareta Navxwe berî 2 salan hatiye vekirin û heta niha 6 şax û 4 ofîsên wê hene û nêzîka 400 karmend û efser di rêveberiya navborî de kar dikin. Di vê navberê de 3892 jinan li vê rêvebiriyê li dijî zexta mêran doz vekirine.

Bi baweriya Rêvebira Navenda Xatûzîn bo Pirsgirêkên Jina Kurd, Çilore Herdî xelk li Kurdistanê hê ji dema zaroktiyê ve bi tundûtûjiyê tên perwerdekirin. Lewma tund derdikevin, herwiha hebûna çekan, li malan vê yekê zêdetir dike. Çilore ku 14 salan li Ewrûpa mamosteyî kiriye dibêje: "Divê guherîn ji malan destpê bike, yanî ji perwerdeya zarokan destpê bike."

Li aliyê din li gor daneyan sala borî li Herêma Kurdistanê 333 bûyerên şewitîna jinan qewimiye.

Bi baweriya psîkolog Yûsif Osman tundûtûjî beşek ji kultûra civaka kurd e û civak beramber zarok, xweza, ajel û hevûdu tund e: "Perwerdeya me tund e yan li jêr guşarên derûnî yên hawîrdorê mirov neçar dibe tund be."

Li gor daneyên Wezareta Navxwe di dema dû salên borî de, rêjeya kuştina jinan ji sedî 50 kêm bûye û li beramber de rêjeya dozvekirinên jinan ji sedî 200 zêde bûye. Li gor daxwiyaniyên Komîser Jîlemo li sala 2009'an rêjeya ji sedî 10 ya xweşewitandinê kêm bûye.

Lê Çilore Herdî bi guman berê xwe dide van hejmaran û tekez dike ku divê medya axaftina hikûmetê dûbare neke: "Jiber bi rastî jî nizanim, li gor daneyên me îsal ji sala 2008'an zêdetir tundûtûjî zêde bûye. Bawer nakim karê hikûmetê yên biçûk bibandor bin, lewma tundûtûjî xetereke mezin e liser civaka me."

Di hefta nehîştina tundûtûjiyê de, Navenda Xatûzîn li kolêjan bi wêneyên jinên ku sala 2009'an bûne qurbanî pêşangehek vekir. Di panelê de tiştê ku bala Çilore Herdî kişandibû ew bû ku xwendekaran gotibûn 'jinên qurbanî karek xirab kirine ku hatine kuştin. Herdî dibêje; "Ger xwendekarên zanîngehê wiha bifikirin, êdî hikûmet çawa dibêje tundûtûjî kêm bûye."

# Medya li dijî xweşewitandina jinan rola xwe nalîze

SORAN BEHAEDDÎN

**Hewlêr -** Li Kurdistanê ji bo rêgirtina xweşewitandina jinan hewldan didomin. Wezareta Navxwe ya Hikûmeta Kurdistanê li gel Komela Amerîkî bo Kurdan (ASK) û saziyên civaka sivîl projeyeke bi nave ''Darêştina Stratejiya Herêmê Bo Nehîştina Xweşewitandinê'' anî rojevê. Li aliyê din di derbarê şewitandina jinan de helwesta medya kurdî jî dibe sedemê nîqaşan û gelek derdor medyayê bi lîstina roleke xirab tawanbar dikin.

Rêveberê Şopandina Tundûtûjiyan Dijî Jinan li Wezareta Navxwe Arî Refîq, rexne li saziyên sivîl dike û dibêje ev sazî bi mebesta kêmkirina xweşewitandinê hatine damezirandin û gelek ji wan kar nakin: "Nêzîkî 1450 rêxistinên sivîl divê ji bo çareserkirina vê pirsgirêkê projeyan amade bikin."

Berpirsa Liqê Hewlêrê yê Yekîtiya Jinên Kurdistanê Sozan Feqê wiha dibêje: "Xweşewitandin pirsgirêkan çareser nake, ger jin bimirin piştî demekê wê bên jibîrkirin û ger nemirin jî wê her roj jiber birînên laşên xwe bimirin û mêrên wan wê careke din jinê bînin yan ger keç bin, kes wan naxwaze."

Doktorê Zanistên Îslamî Qasim Xefûr dibêje xwekuştin di Îslamê de qedexe ye. Refîq rexne li medya yê jî dike ku kêm behsa pirsgirêkên civakî dikin: "Ger ne ji ragehandinê be jineke gundî nizane xwe bişewitîne. Lewma li piraniya welatan medya nikare bahsa bûyerên xwekuştinê bike û li tu welatan jî îstatîstîkên xwekuştinê nayên belavkirin bo derûniya xelkê xirab nebe. Lê mixabin rojnameyên me serjimariyan diweşînin û 100 dikin 3 hezar."

Sala 2007'an, li Hewlêrê 355 jin û keçan xwe şewitandin. Di sala 2008'an, 311 jin û keçên şewitî çûn Nexweşxana Hewlêrê. Li gor Wezareta Mafên Mirovan, di sala 2008'an de li Kurdistanê 333 bûyerên şewitandina jinan qewimîn. Ji van bûyeran 159 li Hewlêr, 118 li Silêmanî û 56 jî li Dihokê pêk hatin. Li gor serjimariya Rêveberiya Şopandina Tundûtûjiya Dijî Jinan sala 2009'an rêjeya şewitandina jinan li Silêmaniyê di pileya yekem de tê, piştre Hewlêr û Dihok tê.



(Salvador Dali)




# Bêjerê nûçeyan divê jin bin!



BEHRE SEDÎQ

**Hewlêr -** Piraniya bêjerên nûçeyan û raportorên Zagros Tv keç in. Berpirsê beşa nûçeyan dibêje ew di tercîhkirina bêjerên jin de psîkolojiya bînerên xwe liberçav digrin: "Jin bo xwendina nûçeyan baştir in, dibe ku derketina rûyê jinê bo derûniya temaşevanan baştir be."

Ji pênc bêjerên nûçeyan yên Zagros Tv, 4 ji wan keç in. Li gor Berpirsê Beşê Nûçeyan ê Zagros Tv, Faxîr Hemewendî vebûna civaka kurd di van çend salên dawîn de de roleke serekî di zêdebûna derfetên karên jinan di alavên ragehandinê de lîstiye: "Jina Kurd îspat kir ku di warê karê ragehandinê de tu cudahî di navbera jin û mêr de tune."

Hemewendî cîbicîkirina daxwazî û hezkiriyên bîneran jî liberçav digre: "Derketina rûyê jinan li ser ekranan bandoreke erênî liser derûniya bîneran dike, dibe ku hinek mêr hebin bixwazin nûçeyan ji devê jinekê, ne mêrekî guhdarî bikin."

Bêjerên jin ên Zagros-Tv nerînên Faxir piştrast dikin ku bîner zêdetir hez dike çav û rûyê jinan liser ekranê bibîne. Aşna Ebdulla ku ev 14 sal in wek bêjer kar dike û niha jî bêjera nûçeyan e li Zagros Tv wiha axifî: "Bêhtir hevwelatî dixwazin rû û rûdêmê jinan liser ekranê bibînin." Lê nerîna Hediye Dolemerî cuda ye: "Xelkê me heta niha jî dixwazin mêr nûçeyan bixwînin, ne jin."

Jiber kevneşopiyên civakê, jinên ku di warê ragehandinê de kar dikin nemaze di televizyonan de ji aliyê derdorê ve nayên piştîvanîkirin. Dolemerî dibêje derdora wê wê teşwîk dikin ku dev ji karê xwe berde: ''Lê baweriya min bi karê min heye û dest jê bernadim."

Aşna Ebdulla dibêje keç zêde hez ji xwendina nûçeyan dikin: "Xwezaya jinê destdar e ku ew hez ji xwendina nûçeyan bike, wek mînak ez rojane berê xwe didim ekranên erebî, kurdî û biyanî û dibînim ku piraniya bêjerên nûçeyên wan jin in."

Bi baweriya Hemewendî, jinên kurd di warê bêjeriyê de gavên mezin avêtine: "Mêrên me hê jî di warê pêşkêşkariyê de li paş in. Lewma ger jinên me jî li paş bin qet ne şerm e jiber ger em xwe bidin berhev li gel pêşkêşkarekî tirkî yan swêdî emê xwe li paş bibînin. Lê jina kurd pêngavên mezin avêtine."




# Îran kurdên Swedê dixe lîsteya Înterpolê

**Stokholm (Rûdaw) -** Dewleta Îranê navê komekî kurd ku welatiyên Swêdê ne, xist lîsteya Înterpolê. Navê wan kesan roja çarşema borî ji alîyê rayedarên Tahranê ve bi tawanbariya ‘‘terorîzm û organîzekirina çalakiyan“ li lîsteya Înterpolê hatiye nivîsandin.

Kesên di lîsteya Înterpolê de bi eslê xwe kurdên Rojhilat in û nêzîkî 20 sal in li Swêdê dijîn û mafê penaberiyê wergirtine. Ew li dijî rejîma Îranê rexneyên aktîf dikin. Ji kesên navborî 6 kes bi tawanbariya ‘‘terorîzmê“, 4 kes jî bi organîzakirina çalakiyan tên sûcdarkirin.

Ji kesên ku tên tawanbarkirin Rasoul Banavand, piştî ku ev kiryar ronî bû, ji The Associated Press re axifî: “Du hefte berê dema ku min nav û fotoyên xwe û 9 hevalên xwe di malpera Înterpolê de dît, ez şok bûm. Ez li dijî rejîma Îranê 30 sal in têdikoşim. Sûcdarkirina Îranê ne tiştekî nû ye. Tiştê ku nayê qebulkirin ewe ku ew daxwaz ji aliyê Înterpol û saziyen navnetewî tên.“ Parêzerê Resoul Banavand, Arezo Julie Jacobson jî dibêje,“heta ji destê me bê, emê li dijî biryara Înterpolê rêyên legal bikarbînin.“

Rêvebirên Înterpolê di derheqê bûyerê de bersiva pirsên The Associated Pressê dan û wiha gotin: “Hemû dewlet lîsteya xwe bi navê bultena sor ji sekreteriya giştî ya Înterpolê re dişînin û ev nivîs di malperê de dimîne. Navê ku di bultena daxwaza Îrane de derbas dibe ji alîyê dewleta Îranê ve ji me re hatiye şandin. Le belê agahiyen wan û fotografên wan heta niha neketiye rojevê. Înterpol bi polîsên wan welatan re jî dixebite. Bultena sor û fermana girtina navnetewî ji hev cuda ne. Dema ku bê bikaranîn em ji welatê wan yên ku lê dijîn, rewşa wan dipirsin.“

Buroya Parastina Zagona Swêdê jî heta niha li dijî wan 10 kesan neketiye nav tevgerê. Dozgerê Swêdê Tomas Lindstrand jî wiha dibêje: “Ti kes nikare hevwelatiyekî Swêdê birevîne û wî li welatekî din darezîne. Eger ku Îran bi israr darezandina wan mirovan bixwaze, hingê em karin wan li Swêdê darezînin. Lê eger ew kes derkevin derveyî Swêdê, rîsk heye ku ew bên revandin.“

Banavand û hevalên wî endamên Partiya Karkerên Komunîst ya Îranê bûn û li dijî rejîma Îslamî têkoşiyane. Yên ku navê wan di lîsteya Înterpolê de cîh digrin, yek ji wan li Brîtanya, yen din jî li Almanya dijîn. Banavand nezîkî 17 sal in hatiye Swêdê û berî hatina Swêdê ew li bakurê Îranê û li Kurdistanê, piştî salên 1979‘an li dijî rejîma îslamî têkoşiya ye. Banavand wiha dibêje: ‘‘Lîsteya Înterpolê hem ji bo min û hem jî bo malbata min nebaş bû. Ez ditirsim derkevim derveyî Swêdê.“

# ‘‘Êdî baweriya min bi demokrasiya Ewrûpa jî nayê“

## Tevî ku xwe bi tenê lingekî avêt bextê edaleta Almanyayê jî, girtiyekî siyasî ji Sûriyeyê bi dersînorkirinê re rûbirû ye.

NASREDÎN AKYOL

**Köln -** Zana* kurdekî 37 salî ye, ji Rojavayê Kurdistanê, ji Dêrika Hemko ye. Zana bi lingekî ye. Ew niha li bajarê Almanya Münchenê dijî û daxwaza wî ya penaberiyê hatiye redkirin û jê tê xwestin ku vegerê Sûriyeyê. Zana yek ji wan kesan e ku bûye qurbanê wan sînorên ku Kurdistan parçe kirine. Wekî gelek xortên ji Rojavayê Kurdistanê, Zana û birayekî xwe jî di destpêka salên 1990’î de tevlî şerê çekdarî li Bakurê Kurdistanê bûn. Birayê Zana di şerekî li Herêma Botanê di sala 1993’an de jiyana xwe ji dest da. Zana bi xwe di sala 2004’an de ji tevgera çekdarî qut bû. Beriya ku ji tevgera çekdarî qut bibe, wi pê li mayînekê kir û ji ber ku zû nehat tedawîkirin lingekî xwe winda kir.

Malbata Zana malbateke kurdperwer e û ew dibeje ku çendîn xizmên wî di nav tevgerên kurdî li beşên cuda yên Kurdistanê cîh girtine. Aliyê bavê wî ermenî bûne û bavê wî jî di salên 70’an de tevlî tevgera Barzaniyan bûbû.

Piştî ku Zana ji tevgera çekdarî qut bû û xwest di sala 2004’an de ji Bakurê Kurdistanê derbasî Rojavayê Kurdistanê bibe, ew ji aliyê hêzên Sûriyeyê ve tê girtin û îşkencekirin. Piştî salekê di girtîgehê de, rewşa wî ya tenduristî gelekî xerab dibe û bi mirinê re rûbirû dimîne, hêzên Sûriyê wî dişînin nexweşxaneyê. Zana derfet dît û ji nexweşxaneyê reviya û hat Almanyayê. Bêyî amadebûna wî, ew ji aliyê dadgeheke sûrî ve sûcdar hat dîtin. Zana niha li Almanyayê dijî û ji aliyê Navenda Alîkariya Penaber û Mexdûrên Îşkenceyê li Münchenê “Refugio“ tê piştevanî kirin û ji aliyê psîkologan ve tê tedawî kirin. Tevî serpêhatiya Zana li Kurdistanê, rewşa kurdan li Sûriyeyê û rewşa wî ya fîzîkî û psîkojîk, dîsa jî serlêdana wî ya ji bo penabertiyê ji aliyê Daîreya Koçberî û Întegrasyonê - Bundesamts für Migration und Integration hate redkirin.

Ji bo ku Zana neyê dersînorkirin, komela “Civata Kurd li Bayern“ beriya demekê kampanyeke alîkariyê dabû destpêkirin. Ji rêvebirên komeleyê Memo Arikan got ku gelek kurdên ji hemû beşên Kurdistanê piştî banga wan ya alîkarî û piştgiriya Zana, li wî xwedî derketine û alîkariya maddî dane wî. Bi wan pereyan parêzerek ji bo Zana hate girtin û biryara redê ya serlêdana penaberiyê hate îtirazkirin. Lê Zana ji dozê bêhêvî ye, ew dibeje ku berjewendiyên siyasî yên dewletan di ser hemû tiştên din re tên girtin. Memo Arikan ji rayedarên almanî matmayî maye û got ku tevî ku Zana gelek dokûment peşkeşî dadgehê kirine jî, dadgehê ew dokûment qebûl nekirine û ji bilî wê jî gelek dokûment li ber çav jî negirtine. Heta dadgehê pêwistî bi wê yekê jî nedît ku li parêzerê Zana yê li Sûriyeyê – ku niha li Brîtanyayê dijî – jî guhdarî bike. Dokûmentên fermî yên di destê Zana de ku ji aliyê saziyeke kurdî bo almanî hatibûn wergerandin jî, bi îdiaya ku sexte ne, nehatin qebûlkirin.

Di nîvîseke ji bo Rûdawê li ser rewşa Zana, “Civata Kurd li Bayern“ dibeje ku Zana mînakeke ji bo siyaseta Almanya ya penaberiyê. Bi vî awayê ku welatên Ewrûpa bi kesên weke Zana re tevdigerin, hikûmetên wan welatan mafekî ku wan bi xwe pejirandije, binpê dikin û dixwazin bi vî awayî pêlên koçberan yên ber bi Ewrûpayê kontrol bikin.

Zana dibeje dema ku wî berê xwe daye Ewrûpayê, wî bawer dikir ku ewê li vir rastî edaletê bê. Lê niha hêviyên wî jî şikestine û êdî baweriya wî bi demokrasiya Ewrûpa jî nayê.

* (navê wî yê rast ji redaksiyonê re nas e)

DR. NEBÎ KESEN

# Rojeva kurdan



Rojeva kurdên li Almanyayê van rojan tijî bûyer bû. Li gelek bajaran konferans, civîn, meş û şev hatin lidarxistin. Babetên wan aktîvîteyan çiqas cûda bin jî, pirranî bi rewşa kurdan ve girêdayî bûn. Tê gotin ku kurd li Almanya koçberên herî sîyasî ne. Ev tespît li gora xebat û hewldanên kurdan rast e. Bi hezaran kurd her mehê beşdarê gelek aktîvîte û çalakiyan dibin û nişan didin ku eleqa wan bi babetên sîyasî û civakî re heye.

Xebata kurdan ya sîyasî, çandî û civakî, di medya kurd (televîzyon, rojname û malperên înternetê) de jî wek nûçe tên naskirin. Lê li ser endamên van xebatan, pirr kêm tişt tên ziman yan jî şirovekirin. Divê civata kurd hinek caran pêş ve binêre û bifikire ku ewqas aktîvîte çi tesîr li ser jiyana me li Almanya kiriye. Ji aliyê din ve, bê pirskirin ku xebat û hewldanên kurdan li Almanyayê û dewletên din yên Ewrûpa, çi rol bo rewşa Tirkiyê û Bakûrê Kurdistanê lîstin.

Di rojeva kurdan de herdem bûyer hene û bi ve girêdayî xebat dikin. Mixabin encamên wê nayên zanîn yan jî ji ber çav wenda dibin. Minakek; serê sala 2009‘an li Berlînê konferansek girîng li ser rewşa kurdên Almanyayê pêk hat û gelek zanyar dîtin û pêşniyarên xwe anîn ziman. Lê ewqas dem derbas bû, rêxistinên kurd yên ku konferens amade kiribûn, çi encam jî konferensê girtin û gav avetîn, hin jî ranegihandine raya giştî. Wê demê konferans bo çi pêk hat û gihîşt armanca xwe? Di medya kurd de jî ev pirs nehat niqaşkirin. Minakên wisa gelek pirr in û ne pêwîst e li vir bên ziman.

Van rojan qedexekirina Partiya Civaka Demokratîk (DTP) di rojeva kurdên Almanya û Ewrûpa de ye. Li ser vê bi dehan hevdîtin, civîn û semîner pêk hatin. Mîrov nikare bêje ku bi xebat û hewldanên kurdên li Almanya piştgiriyek bi nav û deng ji DTP‘ê û mebûsen wê re li vir pêk hat. Ne kesan, ne jî medya kurd pirs kir ku ma ev xebat û hewldanan çi tesîr kirin yan jî bo çi bûn? Armanca niqaş û xebatên li ser girtina DTP‘ê ne tenê ji bo civata kurd ya li Almanyayê ye. Armanca herî mezin divê ew be ku raya giştî ya alman ji aliyê vê babetê xeberdar bibe û qedexekirina DTP‘ê şermezar û piştgirîya kurdan bike.

Xuya ye ku di rojeva kurdan de pirsgirêkên wan yên sîyasî, civakî û aborî li Almanya cihek girîng digre. Rewşa li Tirkiye û Kurdistanê bala kurdên Almanya pirrtir dikşîne. Li gor vê, xebat û hewldan jî li ser pirsgirêk û bûyerên welat pêk tên, yanî rojeva li Kurdistan û Tirkiyeyê bûye rojeva kurdên koçberên Almanya û Ewrûpa jî. Sedemên wê yekê gelek in û kêm tên şirovekirin. Divê kurdên zanyar di dema pêş de li ser van sedeman lêbikolin û bi raya giştî re niqaş bikin.

Rastiyek ewe ku mijûlbûna kurdên Almanya bi pirsgirêkên welat re girîng û pêwist e. Xebatên li Almanya û dewletên din ji bo çareserkirina pirsgirêka kurd divê herdem berdewam be. Lê li alîyê din di wî warî de kurd ji civata alman dûr dikevin û ji rewşa Almanya jî pirr caran bê xeber dimînin. Kêmasîya zimanê almanî sedemek e, lê taqîbkirina rojeva Kurdistan û Tirkiyeyê jî sedemekî din e. Vateya we ewe ku întegrasyona kurdan li Almanya di bin barê pirsgirêka kurd de ye û wê hin jî bimînê.

Daxwazek dawî ewe ku sala 2010’an ji bo kurdên Almanya bi xebat û hewldanên baş û serkeftî derbas bibe. Di vê rojeva kurdan da babet û naverok û pêşveçûnên cudareng dewlemend be.

Sala nû li me hemûyan pîroz be!

# 2009 bi dersînorkirina penaberan derbas bû



*Salane bi dehhezaran kes koçî Ewrûpayê dikin û rawestgeha wan ya yekê kampên penaberan in.* *(Wêne: Rûdaw)*

MİSTEFA ÇİWARTAYÎ

**Köln** – Sala 2009'an ji bo penaberên kurd û Îraqî saleke şûm bû. Bi hezaran penaber bi awayekî tevlîhev û ne çaverêkirî li kamp an li malan hatin desteserkirin û xwe li firokexaneyên Bexda, Hewlêr û Silêmaniyê dîtin. Hikûmeta Almanya di biryareke nû de ragihand ku wê destûra mayina du salan bide penaberên li Almanya.

Dewletên Ewrûpî zext li ser penaberên kurd û Îraqî dikin da ku wan vegerînin welatê wan. Li gor hinek penaberan ew guşar vedigerin hevkarî û reftara Wezareta Derve ya Îraqê li gel wan, beşekî din jî qeyrana aborî ya cîhanî wek sedemê vê yekê dibînin.

Roja 7'ê Tîrmeha 2009'an bi ji bo mesela penaberî û koçberiyê, wezîrên navxwe yên welatên Yekîtiya Ewrûpayê (YE) civiyan û di civînê de Fransayê pêşniyar kir ku rê li koçberiya ne yasayî bê girtin. Herwiha di civînê de hat pêşniyarkirin ku karker û pisporên zîrek ên di nav penaberan de bên wergirtin, bo ku tevî proseya pêşvebirina aboriya welatên Ewrûpayê bibin. Li gor îstatîstîkên ne fermî heşt milyon koçberên ne yasayî li welatên YE'yê dijîn ku heta niha zêdeyî 90 hezarên wan bi zorê bo welatên wan hatine şandin.

**Almanya dilê penaberan xweş dike**

Di payîza îsal de gotegotek di çapemeniya almanî de hat belavkirin ku Almanya wê di sala nû de 40 hezar penaberan dersînor bike û wan li welatên wan vegerîne, nemaze kurd û erebên Îraqî. Lê civîna wezîrên navxwe yên herêmên Almanyayê di roja 4'ê Kanûna 2009'an de guman nehişt. Bi tevahiya dengan û bi lihevkirina her 16 herêman biryar hat standin ku bo dema du salên din mafê mayinê bo penaberên ku niha li Almanya ne bê dirêjkirin. Ev jî dibe derfetek bo van penaberan heta ku bikaribin kar bibînin û karûbarên xwe yên yasayî rêk bixin. Lê biryarê eşkere nekiriye ku piştî van du salan çarenûsa wan wê çi be. Ewrûpayê di civîna wezîrên navxwe de biryar da ku 10 hezar Îraqiyan wergire. Almanya jî wê 2500 kesên Îraqî, nemaze Mesîhî û Êzdiyan wergire û heta niha 2068 kesên Îraqî wergirtiye.

Rehman Mehmud kurdekî Başûrê Kurdistanê ye û ev 11 sal in ku li Almanya dijî û hê mafê penaberiyê bidest nexistiye lê her care mafê mayina wî tê dirêjkirin. Rehman dibêje: "Ev biryar baş e lê belê pirsgirêka min û sedan kesên wek min çareser nake, ezê çawa kar peyde bikim eger nikaribim zêdeyî 30 km dûrî cihê mayina xwe herim? Dibêjin kar bike lê destûra kar nadin min û kar bo wan tune êdî çawa wê bi dest min bikeve?" Lê Şêrwan Evdilla zêde sipasdar e bi vê biryarê. Şêrwan jî ji Başûrê Kurdistanê ye û wiha dibêje: "Her nehiştiba em du salan bimînin me yê çi bikira, em bê desthilatin heta ev herdu sal diqedin Xweda kerîm e."

**Bulxaristan: wargehek nû bo penaberan**

Herçiqasî wergirtina mafê penaberiyê zêde dijwar bûye, lê hê karwanê koçberan ji Başûrê Kurdistanê ber bi Ewrûpayê didome. Li gor wan a girîng ji Kurdistanê derkevin û bigihîjin Ewrûpa, çi Almanya be yan Bulxaristan be. Hê jî beşek ji penaberan berê xwe didin Bulgaristanê.

Arî Mihemed daniştvanê Silêmaniyê ye û ev du meh in gihaye Bulxaristanê, wiha dibêje: "Min li Bulxaristanê daxwaza mafê penaberiyê kiriye. Hejmara penaberên kurdên Başûrê Kurdistanê nêzî 100 kesan e û beşekî ji me bersivên erênî wergirtine." Derbarê vê yekê ku Bulxaristan zêde hejar e û hebûna wan li wir qazanc dike gelo, Arî wiha bersiva da: "Em hewl didin mafê penaberiyê û pasportê wergirin. Bulxaristan endamê YE ye lê em dixwazin piştre herin welatên din ên YE'yê ku rewşa wan a aborî baştir e, da ku em li wir kar bikin."

# Müller bi ala Kurdistanê hat binaxkirin



*Gottfried Johannes Müller*

**Berlîn** – Efserê alman Gottfried Johannes Müller ku di sala 1943'an de tevî endamê rêxistina Hiwa Remzî Nafî Reşîd, bi mebesta serhildanekî dijî artêşa îngîlîz hatibû Kurdistanê, li Berlinê jiyana xwe ji dest da. Müller cara yekem di sala 1932'an de çûbû Kurdistanê û li gel Şêx Mahmûd Berzencî mabû.

Müller di derbarê Kurdistanê de bi navên ''Gerekî bo Kurdistana Daxistî û Li Rojhilata Nav Agir de'' dû pirtûk nivîsandibû.

Müller di bîranînên xwe de digot ku ala Kurdistanê ya niha ji alî wî û hevalê wî, endamê rêxistina Hîwa Remzî Nafî Reşîd ve hatiye amadekirin. Di operasyona bi navê ''Mamut'' de Müller tevî hevalên we hatibû girtin. Hevalê Müller, Remzî ji ber sedemê îşkenceyên zindanên îngîlîzan de jiyana we jidest dabû.

Müller meha borî di 95 saliya xwe de li Berlîna paytexta Almanya koça dawî kir. Li ser wesiyeta Müller tabûta wî bi ala Kurdistanê hat pecan û tevî wê alê hat binaxkirin.

Hevalê Gottfried Müller, Franck Haller ji Rûdawê re got Müller di kerteyên dawîn yên jiyana xwe de, ala Kurdistanê girtiye destê xwe û giriya ye. Franck dibêje, ''Müller gelek hez ji Kurdistanê dikir, kurdan wek xizm û merivên xwe dizanî û Kurdistan wek mala xwe dihesiband. Berî mirina wî, Müller wesiyet li jin û kurê xwe kiribû wî bi aleke Kurdistanê veşêrin.''

Müller ku bi navê Salem saziyeke werxwaziyê avakiribû di sala 1992'an de li Kurdistanê çend dibistan jî avakiribû û serdana Kurdistanê jî kiribû. Ew hinge ji alî Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ve jî hatibû pêşwazîkirin.

# Rojeva çapemeniya cîhanê




REŞAD ÖZKAN

**New York Times:** Tirsa mezintirîn ya Tahranê. Rojnama New York Times bala xwendevanên xwe kişandiye ser Îranê. Li gor sergotara rojnamê tirsa mezintirîn ya Tahranê serhildanêke gelê kurd, azerî û belûciya ye. Tirsa rejîma fars ne serhildana hezên reformist yên Îranê ne. Sergotarê N.Y Timesê Selig S. Harrison wisa nivîsandiye: "Ji bo ayetûllah û generalan yên li Îranê hukum dikin, xetera mezintirîn ji aliyên multî-etnîkên Îranê tê. Muxalefeta demokratîk a ku dixwaze rejima Îslamî reforme bike ne xeter e bo wan. Eger em gelê faris ku hukmê Îranê dike ne hesibînin, gelên din; kurd, azerî, belûc û kêmnetewên di herema ereban de niştecihin, ji şêniya Îrane sedî 44`an pêk tînin. Lêbelê dema ku ev gel û hezên reformîst dest û hezên xwe bidin hev, bikin yek hingê ewê karibin pişta rejima Îslamî bişkînin. Tevgera reforma Îslamî a ji alî elîta faris, ji alî hinek esker û oldarên navdar ve tê destekkirin heta niha jî çav û gûhên xwe ji bo maf û daxwazên multî-etnîkên li Îrane dijîn girtine, redkirine. Daxwazên kêmnetewên Îranî çi ne? Ew jî dixwazin wek farisan parhebin, wek farisan bijîn. Ew jî dixwazin bi zimanê xwe hînbibin, di zanistî, siyaset û azad bin, ew zordariye naxwazin."

S. Harrison bi pirsekî dawî li nivîsa xwe tîne: "Divê Amerîka alîkariya diravî ya şoreşgerên etnîki bike, çek bide wan?

**Le Monde:** Îran ji derketina "egîdên" nû ditirse. Rojnama fransî Le Monde jî li rejima Îslamî ya Îranê rexne dike û di sergotara xwe de viha dinivisîne: "Hune bivêjin hikûmeta Îranê li hemberî vê serhildanê çima ewqas bi nermî hereket dike û serhildanê naşkîne? Erê rast e ji bo pelixandina vê serhildanê hinekî terreduta wan heye. Dûdiliya rejîmê ne şikandina serhildanê ye, tirsa rêveberiya Îranê derketina "egîdên" nûye ne.

**Die Welt:** Îspanî, Swedê jê vedikin. Rojnameya Alman a muxafazakar Die Welt di rûpelên xwe de bala xwendevanên xwe dikşîne ser teror û ewlekariya welatên Ewrûpa û demdoriya serokatiya Yekîtiya Ewrûpa. Rojnamê di sergotara xwe de li ser demdoriya serokatiya Yekîtiya Ewrûpa diskine û wiho dibêje: ''Îspanî Swedê jê vedikin. Îspanya di vergirtina serokatiya demdorî ya Yekîtiya Ewrûpayê de lixwegirt û rojgarek nû destpêkir. Bi serokatiya Îspanî re jî yêkemîn peymana reformê ket rojevê. Ev karekî pir giran û giring e.

**El Pais:** Îspanya Navenda Parastinê Dijî Terorê sazdike. Li gor rojnama Îspanya El Pais, Spanya dixwaze di demdora serokatiya xwe de 21 û 22`ê vê mehê li dijî terora navnetewî "Nevenda Parastinê Dijî Terorê" sazbike. Rojname ev bêjvaza xwe ji berdevokekî vezareta navxwe ya îspanî girtiyê. Li gor El Pais vazifê û karê vê navendê kordînasiyona hevkarî û bihevgirêdana agahiyan di navbera "navendên netewî dijî terore " yên endamên Yekîtiya Ewrûpa de be.

**Der Standart:** Li gor rojnama Awûstirya Der Standart, Serokwezîrê Îspanya Jose Luis Rodrîgez Zapatero dixwaze bi avakirina navendek dijî terorê bi alîkariya Yekîtiya Ewrûpa pişta ETA'yê bişkîne. Der Standart dibeje Almanya, Fransa, Îtalya, Portekîz, Hollanda, Belçika û Danîmarka jî ji bo vê insiyatîfê piştgiriya Îspanyayê dikin.

■ ALMANYA

## Par 2 hezar penaberên Îraqî wergirt

**Berlin -** Wezareta Navxweyî ya Almanyayê daxuyand ku wan di sala 2009'an de 2 hezar penaberên Îraqî wergirtiye. Wezaretê daxuyand ku heta hefta dawîn ya sala 2009'an de mêr, jin û zarokên Îraqî gihane kampa Friedland a penaberan ya li herêma Saksonya Jêr a li Rojhilatê Almanyayê. Herwiha Almanya soz daye ku 2500 penaberên Îraqî werbigire û tê texmîn kirin ku ev hêjmar di sala bê de biqede. Wezaretên navxweyî yên welatên endamê Yekitiya Ewrûpayê soz dayîne ku pêşwaziyê li 10 hezar penaberên Îraqî bikin.

■ HOLLANDA

## Li qursa Quranê lêdana zarokan

**Amsterdam -** Gelek malbatên Misilman li Hollandayê zarokên xwe dişînin qursên fêrbûna Quranê û li wir rastî lêdanê tên.

Rojnameyeke hollandî dosyeyeke di derbarê îşkencekirina 49 zarokan amade kir û da zanîn ku laşê zarokên temen 10 salî bi rêçên lêdanê dagirtiye. Îmamê mizgefta tewanbarkirî tohmeta xwe red kir.

Çavkaniyekê mexrîbî tekez kir ku zarok di dema beşdarbûna dersên xwendina Quranê de rastî lêdaneke tund tên û got ku zor e ev bûyer bên piştrastkirin ji ber ku dayik û bavên zarokan bi awayekî eşkere behsa van bûyeran nakin. Siyasetmedarê Misilman Ehmed Merkûş jî daxuyand ku belge hene ku li seranserê Hollandayê di dema dersên ezberkirina Quranê de bi awayekî xirab reftar li gel zarokan hatiye kirin û mebesta vê yekê dûrkirina zarokan ji civaka rojavayî ye.

■ RÛSYA

## Li Rûsya şerê Vodkayê




**Köln -** Li gor zargotinekê, Vodka dilê rûsan difirkîne. Lê vodka rûsan zû dikê gorê jî. Li gor lêkolînan sedema mirina nivê kesên ku zû dimirin alkol e. Ji xwe ji aliyê îstatistîkî ve mêrên rûsî tenê 59 salan dikin. Ji bo pêşîlêgirtina vê nexweşiya civakî, hikûmeta Rûsyayê ket nav hewldanan û ji destpêka salê ve buhayê Vodkayê duqat kir û nîv lîtreya vodka bi herî kêm 89 Rubel (2,08 Euro) e.

Rexnegirên vê biryarê bi gumanin ku hewldana serokê Rûsyayê Medwedew bighijê encamekî erênî. Beriya Medwedew jî gelek serokên Rûsyayê yên weke Nikolaus II. û Mixaîl Gorbaçow hewl dabûn ku rûsan ji vexwarina vodkayê sar bikin: Serok çûn û vodka ma.

### Hevseroka Keskan Claudia Roth:

# Vebûna AKP'ê derewên polîtîkaya Tirkiyeyê rawestand

"Ji ber ku li Tirkiyeyê hêza muxalefetê nasyonalîst û şovenîst e ku carna dibe sedema kiryarên qirêj, divê ji bo çareserkirina pirsgirêka kurd gavên pragmatîst û realîst werin avêtin."



*Claudia Roth ji sala 2004'an ve hevseroka Partiya Keskan "Bündnis90/Die Grünen" e.* *(Wêne: Rûdaw)*

SEYÎDXAN KURÎJ

**Duisburg - Hev**seroka Partiya Keskan ya alman Claudia Roth dibêje li Tirkiyeyê pirsgirêka herî mezin pirsgirêka kurd e û ji bo ku Tirkiye bibe endamê Yekîtiya Ewrûpayê, divê li beramber mafê mirovan rêzmend be û pirsgirêka kurd bi rê û usûlên demokratîk li gor pîvanên konvensiyona mafên mirovan ya navnetewî çareser bike. Roth di derbarê têkiliyên Almanya û Kurdistanê jî dibêje ku ew wek yekem koma parlamenteran çûne Kurdistanê û daxwaza geşkirina têkiliyên herdu aliyan kirine.

***Çend meh berê li Almanya hilbijartinên giştî pêk hatin. Hûn bi giştî û ji bo partiya xwe wan hilbijartinan çawa dinirxinin?***

Di wan hilbijartinan de me ji sedî 30'ê rayên xwe zêde kirin û ew encameke herî baş bû ku me heta niha di hilbijartinên Parlementoya Federal de girtine. Lê mixabin dîsa ji me nikaribû bibin astengên avabûna koalîsyoneke kevneperest. Ji ber ku sosyal-demokratên Almanyayê di dîroka xwe de qrîza herî kûr dijin.

***Partiya we di bernama xwe ya hilbijartinê de digot ku ewê bi konsepta sanayiya ekolojîk 500 hezar cihên kar peyda bikin.***

Em dixwazin ji bo mîlyonekî însan kar peyda bikin. Emê di wan sektorên ku pêşeroja wan heye, veberhênanê pêk bînin. Wek mînak şaxên wek enerjiya xwenûker, di wî warî de di van salên dawî bi sedhezaran cihên kar vebûn. Her wisa di warê kiştûkala bîo de jî potensiyalekê mezin heye. Xercî wan em dixwazin di warê perwerde û tenduristiyê de ji gelek cihên kar peyda bikin.

***Wek ku tê zanîn di demên dawîn de Hikûmeta Tirkiyeyê bi navê "Vebûna Kurd" projeyekê eşkere kir. Hûn vê projeyê an jî vê polîtîkayê çawa dinirxinin?***

Tirkiyeyê ji bo çareseriya pirsgirêka kurd bernameyekê reforman eşkere kir û di vê çarçovê de gavên bawerder avetin. Ew ji bo me pêşveçûnên mezin yên sîvîl in û em hemû vê yekê silav dikin û destek dikin. Niha derewên polîtîkaya Tirkiye ku bi sedsala ne didomin, bi dawî bûn. Tirkiye dewletekê fire olî û fire netewî ye. Gava Tirkiye xwe wek dewletekê demokratîk û dadmendî bihesibîne, divê hemû mafê kêmnetewan biparêze û misoger bike. Di wî warî de pirsgirêka herî giring pirsgirêka kurd e. Me her tim xebat kir ku polîtîkaya tirk, pirsgirêka kurd bi rê û usûlên demokratîk li gor pîvanên konvensiyona mafên mirovan ya navnetewî çareser bike.

***Ji bo çareseriya pirsgirêka kurd hewcedariya piştgiriya hêzên navnetewî heye. Ji bo wê heta niha partiya we çi kir û ji bo dahatî çi planên we hene?***

Hewldanên tirkan yên rojane ku dixwazin bi kurdên Tirkiyeyê re dest bi diyalogê bikin, ji aliyê hemû dewletên demokratîk ve tên destek kirin. Yekitiya Ewrûpa (YE) li vir dikare rolekî taybet bilîze. Lewra niha bi Tirkiyeyê re ji bo ketina YE'yê danûstandin didomin. Divê YE bi zimanekî vekirî û misoger ji Tirkiyeyê re bêjê ku 'heta hemû pirsgirekên girîng yên kêmnetewan û yên mafê mirovan çareser nekin û heta nebin dewleteke dadmend hûn nikarin bibin endamê YE'yê.' Divê Tirkiye berê li gor pîvanên YE'yê bibe dewletekê demokratîk û dadmend, ancax wê gavê dikare di nav YE'yê de cîh bigre.

***Demekê berê ji ber rewşa Abdullah Öcalan ji aliyê DTP ve li çend bajarên Kurdistanê çalakiyên demokratîk hatin organîze kirin, lê li wir di navbera xortên kurd û polisan de pevçûn pêk hatin. Piştre ji DTP hat girtin. Hûn bi giştî pozîsyona DTP'ê çawa dinirxinin?***

Ji ber ku li Tirkiyeyê hêza muxalefetê nasyonalîst û şovenîst e ku carna dibe sedemê kiryarên qirêj, divê ji bo çareserkirina pirsgirêka kurd gavên pragmatîst û realîst werin avêtin. AKP îşaretekê bawerkar da ku ew amade ye ber bi kurdan ve biçe. Ew faktoreke girîng e ku li Tirkiyeyê ji bo çareseriya pirsgirêka kurd pewîst e. Nûnerê kurdan û rêxistinên wan divê vê yekê her li ber çav bigrin.

***DTP hat girtin. Koma Keskan li Parlementoya Ewrûpayê li diji vê yekê çi kir?***

Girtina DTP'ê sînyaleke werankirinê û darbeyekê pir mezin e ku dikare Tirkiyeyê çend salan paşve bavêje. Me çend car di vê derheqê de dîtînên xwe anîn ziman. Me got ku qedexekirin ti tiştekî pozîtîf nayne, çareserkirina pirsgirêkan zêhmettir dike. Me ji YE'yê daxwaz kiriye ku rêyên vekirinê û diyalogê berdewam bikin.

***Hûn bi giştî politikaya DTP'ê çawa dinirxînin? DTP politikaya AKP baş nirxand?***

Di nav DTP'ê de gelêk hevalên min hene, ez pir qîmet didim wan. Dîtînên wan ji bo min hêja ne. Gava em tevî delegasyonan diçin Tirkiyeyê, em hewl didin ku em bi DTP re jî rûnîn. Bi awayekî eşkere diyar e ku pozîsyona hevbeş ya DTP'ê di meclîsê de nîne. Li gor tecrûbeyên min ji bo destpêkirina çareseriyeke bawerdar û ji aliyê polîtîk ve, hewceya kurdan di parlementoya Tirkiyeyê de bi temsîlê heye. Bi qedexekirina DTP'ê ew derfet ji destê kurdan naçe. Siyasetmedarên biaqil û kêrhatî dikarin formên din bibînin, da ku bikaribin berjewendiyê alîgirên xwe biparêzin.

"Bi awayekî eşkere diyar e ku pozîsyona hevbeş ya DTP'ê di meclîsê de nîne."

***Hûn demekê berê li Başûrê Kurdistanê bûn. Peşveçûnên li wir çawa dinirxinin?***

Pêşveçûnên Kurdîstana Îraqê hêviyên mezin didin me. Berî her tiştî ji bo parçeyê din yê Îraqê. Lewra rewşa Kurdîstanê ya ewlekarî û li vir bicîhbûna strûktûra polîtîk nîşan dide ku ew peşveçûn li Îraqê ji mimkun in. Ger mirov strûktûra Kurdîstanê ji bo parçeyê din yê Îraqê bigre ber çavan, wê gavê strûktûra Kurdistanê dikare ji bo Îraqeke Federal bibe mînakeke pirr baş. Kurdistaneke demokratîk ku bikaribe xwe di Îraqeke federal de bi rêyekî aştiyane û dadmend pêşve bibe, dikare ji bo dewletên cîran, însanên ku li vê herema mezin û bê aramî de dijin bibe nîşanekê baş.

***Almanya niha li Hewlerê balyozxaneyek vekiriye. Hûn pêwendiyên di navbera Hikumeta Federal ya Kurdîstanê û Almanyayê çawa dinirxinin?***

Gera me ya Hewlêr û Silêmaniyê gera yekemîn ya koma parlamenterên Almanya bû. Piştî vê gerê, me wek fraksiyonekî parlamenterên alman daxwaz kir ku Almanya li Kurdistanê nûnertiyekê veke. Daxwazên me çend sal paşê hatin cîh. Bi bernameyên polîtîk – kulturel Almanya dikare ji bo geşbûna pêwendiyên aborî jî pirr tiştên baş bike. Ji bo pirraniya veberdêrên biyanî rewşa polîtîk ya navxweyî û rewşa ewleyî pirr girîng in.

***Hûn wek 'hevala koçberan', lê pirrani wek 'hevala tirkan' tên nasandin. Li Almanya ne tenê koçberên tirk, koçberên ji netewên din jî hene. Hûn di nav koçberan de layengiriyê dikin?***

Ez li Almanya û li YE'yê ji bo întegrasyoneke modern û polîtîkaya penaberiyê ya mirovane kar dikim. Ew polîtîka ji feraseta min ya derheqê mafê mirovan û mafê hemwelatiyê tê afirandin. Ji ber wê gava ez cara yekemîn çûm Tirkiyeyê, ez li hemberê binpêkirina mafê mirovan û mafê kêmnetewan derketim. Keskan di Parlemetoya Ewrûpayê de bi awayeke vekirî pirsgirêka kurd û ermeniyan anîn rojevê û li ser nîqaş kirin. Ji ber wê ez ji aliyê nasyonalîst û şovenîstên tirkan wek 'dosta kurdan û dijmina tirkan' hatim nîşandan. Pozîsyona ku ez di hevdîtinên întegrasyon yên li Almanya û hevdîtinên endambûna Tirkiyê ya YE'yê de temsîl dikim dibe sebeb ku ez ji aliyê rasîstan ve jî wek 'dosta tirkan' bêm nîşandan.

### Artêşa Amerîka di alarmê de ye

# Hejmara leşkerên xwekuj zêde dibe

**Bi dehhezaran leşkeren amerîkî li seranserê cîhanê di şer de ne. Ji bilî qurbaniyên "di şerê li dijî dijmin" de, şerê li dijî dijminê hundirîn jî baca xwe distîne. Hêviya generalan Obama ye, lê destê wî jî girêdayî dixuyin.**

**Serwîsa Cîhanê (Rûdaw)** – Bêhnvedanên kurt, operasyonên dijwar: Di sê salên borî de rêjeya leşkerên amerîkî yên xwekuj nêzî ji sedî 40 zêdetir bûye.

Hejmara bilind ya leşkerên amerîkî ku xwe dikujin, artêşa DYA'yê xistiye alarmê. Tenê di 10 mehên sala borî de 140 leşkerên amerîkî xwe kuştine – bi qasî tevaya sala 2008'an. Gelek berpirsên leşkeriyê vê yekê bi bêhnvedanên kurt di navbera oprasyonên leşkerî yên giran li Îraq û Afxanistanê ve girê didin. Ji ber vê yekê berpirsên leşkerî ji serokê DYA'yê Barack Obama dixwazin ku ew li dijî vê rewşê tedbîran bigre.

Ji sala 2006'an ve hejmara leşkerên amerîkî yên ku xwe kuştine, ji sedî 37 bilindtir bûye û yekemcar sala borî rêjeya kesên xwekuj di nav artêşê de ji ya kesên sivîl li DYA'yê bilindtir bûye. Generalên sereke bi şik in ku mezinbûna hejmara xwekujan bi bilinbûna zexta psîkolojîk li ser leşkeran ve girêdayî be. Psîkyatirê leşkerî Elspeth Ritchie ji kanala Voice of America re îzah kir ku sedema bingehîn ya xwekuştina leşkeran tevlîbûna wan ya zede û dirêj di operasyonên leşkerî yên dûrî welatê wan û di şertên dijwar de ye. Generalên amerîkî ji Obama dixwazin ku leşkerên ku vedigerin malê, herî kêm salekê li DYA'yê bihele, beriya ku ew careke din bo operasyonen derveyî DYA'yê bên şandin. Lê li gor nêrîna Enstîtuya Lêkolînên Şer - Institute for the Study of War li Washingtonê, ev peşniyar dikare Obama têxe tengasiyên ciddî. Eger Obama guhdarî generalê xwe bike, wê demê hejmara leşkerên ku dikarin bo derveyî DYA'yê bê şandin wê gelekî bi sînor bibe û Obama wê nikaribe bi qasî ku generalên wî yen li Îraq û Afxanîstanê dixwazin, leşkeran bişîne wan welatan.



*Salane bi sedan leşkerên amerîkî ji ber traumayên di şer de dawiyê li jiyana xwe tînin, anjî rastî pirsgirêkên psîkolojîk yên giran tên.*

Lêkolîneke ku havîna borî li zanîngeha Kalîforniyayê hatibû kirin, eşkere kiribû ku bêtirî ji sêyan yekê leşkerên amerîki yên ku ji Îraq anjî Afxanîstanê vedigerin DYA'yê, rastî pirsgirêkên psîkolojîk yên wekî syndroma stresê ya posttraumatîk û depresyonê tên. Ji bilî vê jî, gelek leşkerên paşveger bi pirsgirêkên vexwarina alkolê re rûbirû dimînin.

Di vê navberê de artêşa DYA'yê jî ketiya nava hewldanan û çendîn bernameyên tedawiyê dest pê kirine. Di reklaman de artêş bangî leşkerên xwe dike ku pirsgirêkên xwe piştguh nexin û alîkariyê bixwazin. Leşkerên ku ji operasyonan vedigerin, di lêpirsînan re derbas dibin, bo ku rewşa wan ya psîkolojîk bê zanîn û eger kesekî xwedî pirsgirêkên giyanî bê tesbît kirin, alikariya wî bê kirin. Lê li gor cîgirê serfermandarê artêşa DYA'yê Peter W. Chiarelli, motîfên xwekuştine hewqasî gelekin û ji hev cude ne ku dîtina leşkerên xwedî pirsgirêkên psîkolojîk gelekî zehmet e. Chiarelli dibeje ku ji sêyan yekê wan leşkerên ku di sala borî de xwe kuştine, ti caran bo herêmeke aloz nehatine şandin.

Beriya çend mehan bûyera kuştina 13 kesan û birîndarkirina 40 din ji aliyê psîkyatirê artêşa DYA'yê, Nidal Malik Hasan, li baregeha Fort Hood bal kişandibû.

### Enstîtuya Lêkolînên Arîşeyan:

# Şer kêmtir dibin lê aştî nayê

**Serwîsa Cîhanê (Rûdaw)** – Hejmara şer û pevçûnên çekdarî di sala borî de li seranserê cîhanê kêmtir bûn. Tevlî vê yekê jî lêkolînerên arîşeyan hişyar dikin ku kêmbûna hejmarê nayê wateya zêdebûna aştiyê.

Ji dema ku mirov hene, ji wê demê ve şer jî hene – ev girêdana şer û mirovantiyê serokê DYA'yê Barack Obama bi bîr anî, dema ku wî xelata aştiyê ya Nobelê meha borî li Osloya wergirt. Di dema îroyîn de şerên di navbera dewletan de kêmtir dibin, lê di heman demê de şer, arîşe û nakokiyên navxweyî – ku herî zede zirarê dighînin mirovên sivîl – zêde dibin, weke ku Obama bi bîr anî: "Di şerên îroyîn de ji leşkeran bêtir sivîl têne kuştin. Arîşeyên dahatû têne çandin, aboriyên netewî têne lawazkirin, civakên sivîl hildiweşin."

Tesbîtên siyasî yên Obama ji aliyê lekolînên zanistî ve jî têne piştrastkirin. Enstîtuya Heidelbergê ji bo Lêkolîna Arîşeyan - Heidelberger Institut für Internationale Konfliktforschung (HIIK) di raporta xwe ya dawî de eşkere kir ku di sala 2009'an de hejmara şerên çekdarî li gor 2008'an li seranserê cîhanê kêmtir bûne. Lê enstîtuyê hişyariya wê yekê jî kir ku kembûna hejmara şeran nayê wateya zêdebûna aştiye, ji ber ku di heman demê de 365 herêmên bi arîşê li cîhanê hatine tesbîtkirin. Tecrûbeyên demên borî jî ew yek nîşan daye ku gelek nakokiyên herêmî zû dikarin berfireh bibin û hilkevin asta şer.

Li gor lêkolîna HIIK wekî salên borî jî pirraniya herêmên şer û bi arîşe li Rojhilata Navîn, Asya û Afrîkayê ne. Li Ewrûpa û Amerîkayê kêm şerê çekdarî hene, li Awûstralya û Zelanda ya Nû jî şerê çekdarî tune.

HIIK wekî şerên herî giran yên 2009'an, pevçûnên di navbera çekdarên Talîbanan û hikûmetên Afxanîstan û Pakistanê (12 hezar kuştî), êrişên Îsraîlê yên ser Şirîta Xezzayê (1500 kuştî) û pevçûnên li bakurê Yemenê di navbera hêzên hikûmeta navendî li Sanayê û serhildêrên Şiî bi nav dike.

Di nava 31 giringtirîn arîşe û şerên çekdarî yên sala 2009'an de ji bilî pevçûnên li Îraqê yên li ser desthilatê, pevçûnen di navbera gerîllayên PJAK û Îranê û PKK'ê û Tirkiyeyê jî hatine rêzkirin.

Enstîtuya Heidelbergê ji bo Lêkolîna Arîşeyan ji sala 1991'ê ve şer û arîşeyên navxweyî û navnetewî lêdikole û salane raporteke diweşîne. Ji dema weşana raportan, bi 52 arîşeyên giran, sala 1992'an sala herî bi arîşe bû.

### Li parazvanê mafê mirovan 11 sal ceza

# Şaji geihoukan *




* *Goteneke çînî: "Ji bo ku meymûn bê tirsandin, divê mirîşk bê kuştin." Parêzvanê mafê mirovan yê naskirî yê çînî Liu Xiaobo.*

**Serwîsa Cîhanê (Rûdaw)** – Li gor gotineke pêşiyan ya çînî, ji bo ku meymûn bê tirsandin, divê mirîşk bê kuştin (Şaji geihoukan). Bi biryara girtina yek ji serkêşên tevgera reformxwaz li Çînê, Partiya Komûnîst dijberên rejîmê hişyar kir.

Hefteya borî parêzvanê mafê mirovan yê naskirî yê çînî Liu Xiaobo bi 11 salan girtîgeh hate cezakirin. Cezakirina Liu Xiaobo li seranserê cîhanê bû sedema nerazîbûnan û tê guman kirin ev yek bibe destpêka pêvajoyeke nû li dijî rexnegirên desthilata Çînê. Biryara cezakirina Liu Xiaobo hem weke sinyaleke li dijî hewldanên ji derve û hem jî weke çavtirsandina çalakvanên din tê hesibandin. Beriya ku biryra cezakirina Liu Xiaobo bê dayîn, tenê rûniştinek du saetî ya dadgehê pêk hat.

Çavdêrên siyasî biryara cezakirina Liu Xiaobo siyasî dibînin û tê gotin ku Partiya Komûnîst pêwistî bi bersiveke hişt li dijî manîfestoyeke bi navê "Çarta 08" – ku Liu Xiaobo jî yek ji amadekarê wê bû – dîtiye. Di manîfestoya navborî de banga berfirehkirina demokratiyê û mafê mirovan li Çînê tê kirin û bêtirî 300 mafnas, nivîskar, hunermend û zanyaran piştgiriya xwe bo manîfestoyê nîşan dabûn û daxwaza destûreke nû kiribûn. Liu Xiaobo ku berê mamosteyê zanîngehê bû, di sala 1989'an de jî piştî xwepêşandanên xwendekaran hatibû girtin û 20 mehan di zîndanê de mabû. Ji wan kesên ku manîfesto destnîşan kirine, heta niha tenê Liu Xiaobo hatiye girtin.

Rêxistina mafê mirovan Amnesty International piştî biryarê daxuyand ku bi vê biryarê Partiya Komûnîst daye xuyakirin ku ew ti guftûgoyên li ser awayê desthilata welêt qebûl nake.

# Weşanxaneyê Vateyî ra kitabê neweyî




**1**
**Jêhatî Zengelan**
**Zifqêra Berî**
**Weşanxaneyê Vateyî**
**Îstanbul, 2009**
**190 rîpelî**

Zifqêra Berî, romanê kirmanckî (zazakî) yê eşqî yo. Eşqêko bêhêvî, eşqêko teberê qaydeyan de bi nimitkî la bi hawayêko bengînkî dewam keno.

Jêhatî Zengelanî nê romanê xo de têkilîya yew cinîya amerîqayije û yew kurdî nuseno. Her di qehremanê romanî zî zewejîyaye yê û na têkilîye de xo û têkilîya yewbînî rexne kenê. Roman de dejê nêresayîşê bi yewbînan yê di heskerdîyan qal beno. No roman hetê meseleya xo ra, şêno sey romanê eşqî yê zazakî yo verên bêro qebulkerdene.

**2**
**Newzat Valêrî**
**Dejê Nimiteyî**
**Weşanxaneyê Vateyî**
**Îstanbul, 2009**
**80 rîpelî**

Kirdkî de no kitabo yewin yê Newzat Valêrî yo. Kitab, di qismî yo. Qismo yewin bi sernameyê "Dejê Nimiteyî", qismo dîyin zî bi sernameyê "Derdê Dinya" kitab de ca girewto. Her qisim de des şîirî estê.

Kitab bi yew rêza îthafkerdişî dest pêkeno: Seba înanê ke bêmirad na dinya ra bar kerd û şîy

Şaîrî kitabê xo de qedr dayo şaîranê xo ra ver yê kurdan. Çend şaîran ra, tayê rêzî neql kerdê.

Derheqê kitabê şîîran yê Newzat Valêrî de çîyo tewr muhîm no yo ke şaîrî fekê mintiqaya xo de rike nêkerda, xo mîyanê sînoranê fekê dewa xo yan zî mintiqaya xo de xo heps nêkerdo. Bi ziwanêko fesîh, sade la hende zî nêzdîyê standardî nuşto. Bi no qayde xîtabê heme kirdan (kirmancan/zazayan) keno.

Şîîrê şaîrî, zafane haletê rûhîyeya emrê hîrisserrîye nîşan danê. Nê tewir şîîrî, yan zî no haletê rûhîye, xo romantîzmo pembe yê ciwanîya ra xelisnayo la hema nêresayo deresayîşê emrê çewresine.




# Stokholm de şewa şîîranê kurdkî


(Wêne: www.radioasti.org)

**Stockholm -** Şewa şîîranê kurdkî ke hetê komeleya nuştoxanê kurdan yê Swêdî ra organîze bîye roja 25.12.2009, şan de Stokholm de virazîya. Şayî saete 16.00 ra hetanî 21.00 dewam kerde.

Şewe de serekê komeleya nuştoxan Zinar Soranî xêrameyîş ro mêmanan kerd. Dima ra Serdar Roşanî şewe îdare kerde. Ewilî behsê programê şewe kerd û dima ra bi zazakî û kurmancî Malmîsanij dawetê wendişê şîîran kerd. Malmîsanijî yew şîîra zazakî wende. Malmîsanijî ra pey, dengbêj Armancî temburê Remzî reyde çend deyîrî vatîy.

Bêdê înan Sidqî Hirorî, çend şîîrê xo wendîy. Ey ra dima Baha Şêxoyî bi tembur û vengê xo şewe şên kerde. Ey ra dima zî Felemez Akadî çend şîîrî wendîy.

Ganî Kemal Burkay zî biameyne la mazuratêk ra nêşêya bêro. Endamê komeleya nuştoxan Xaluqî çend şîîrê ey wendîy. Şewe bi muzîk û tembûrê Baha Şêxo, Armanc, Lorîn û Remzî dewam kerde û hetanî saete 21.00 ramite. Şewe de 30 merdiman vêşêr beşdarî estbîy. Zehfê beşdaran endamê komela nuştoxan bîy.

# Hunerê Munzur Çemî û romantîzm - 3

HUDAÎ MORSUMBUL

Goreyê fikrê mi ra tarîfkerdişê zereyê mekanî de zî rind nênuseno. 3Êdî ndinyayê eşyayî psîkolojîya merdiman û karakteran ano ra ziwan. Ma vînenîme ke romanê modernî de êdî yew saete de çi bîyo çi nêbîyo hurdî-hurdî yeno ra ziwan. Bi taybet eşyayî cayêde gird gênê. Nuşteyan de, bi taybet roman de, kinc û kolê karakteran, yan zî, mekano ke ê tede rakewenê, şinê tuwalet, nan wenê ma rind nêvînenîme. Tîya de ez nimûneyêko baş bidîme:

"Bero virên ra ke vêrdî ra rasterast kewtî odayêda qijkeke. Hetê înan de uca ra çardaxe vajîyêne. Çardaxe de hîrê berî bî. Nînan ra yew tam hemberê berê gîrsî de bî. Peyê cû musayî ke o ber, berê kilerî yo. Çîyê werdene; vajîme ke ardî, ron-toraq, kartolî, pîyaz û çîyo bîn uca der o. Her di berê bînî hemberê yewbînî de bî. Yew çep yew rast de.

Refan ser o qab-qecax amebî rêzkerdene. Quşqaneyî, biroşî, tawikî, uskira û bardaxî; girs û hurdî tebax û çîyê bînî pêro têlewe de bî. Heto çep de, binê refan de kî adirgana sipîye ser o, viz-vize bîye, lulîya çaydanî ra puxur vejîyêne. No amêne o mane ke çay amade bî. (r. 66)

Karakteran ebe leşî û kincan yan zî ebe jest û mîmikanê xo gerek bîyerê ra ziwan. Dergîye, kilmîye, rengê porî ameyo nuştene. Ebe çekuyê standardan nînan nuseno. Ma seba nê zî nimûneyêk bidîme hol beno:


Munzur Çem

"Çitur ke Zerîfa bîbî teber, Gulcane kî cayê xo ra wuştîbî ra, şibî verê pencera, kaleka perdeyê tulînî ra nîyadabî ke hala Pîro ke Zerîfa vatêne, merdimêde senên bî. Yewêde dergo qer bî Pîr. Por de hama hama ke têla sîyaye nêmendîbî. Rengê rî û porî winî ziddê yewbînî bî ke, merdimî vatêne ke qalibê vewre, cor de no ro parçeyêde komîrî ser. Tena derg nê, xeylê kî qalind bî. Mabênê her di bêrikan hama-hama ke metreyê vejîyêne. Her destê xo hondê hûyê, her engişta xo hondê goşêde digoşe bîye. (r. 128)

Rîpelanê bînan de, vajîme ke rîpelê 166 de kênekî yewbînî sencenê. Leşane xo ser fikr danê. No zî cayêde muhîm o, ma nêzdîyê leşa înan benîme.

Bîyayîşê ma yê sosyalî pêro yenê nuştene. Her het ra ma nê romanî ra fikr gênîme. Wexto ke Îstanbul de Gulcane bi ziwanê xo qisey kena, kurdbîyayîş tengîyêde girde ano ra meydan. Ti çimê înan de bena "verga fekgonine". ( r. 212)

Nê bîyayîşî fekê Munzur Çemî ra nusîyênê. Ma kotî ra zanîme? Cerebnayenî yan zî meqaleyê Munzur Çemî zî ebe nê ziwanî nusîyay. Ganî ferqê mîyanê ziwanê romanî û meqaleyan de estbo yan ney?

Hetê teknîkê romansazkeredene de zaf zor nêdano wendoxî. Dem kronolojîk derbas beno. Tayê cayan de leytmotîfî vîrazîyay. Nîyadayîşê xo ra peyî, ca bi ca şuxulneno.

Ebe nameyanê karakteran nuştox her het ra verê xo vîneno. Surprîzê pîlî nevejînê vernîya wendoxî. Nameyê tirkan Tarkan, Cengiz ê. Nê xirab ê. Mîyanê tirkan de kî nameyê xo Ajda esta. Sey nameyê xo rind zî bena. No hal tahmode xax, çîyode bêtahm ano verê ma de nano ro. Romanê bînan de zî nê tesbîtê ma cayê xo gênê.

Edebîyatê kurdan de kirmanckî zî cayê xo giran-giran gêna. Ez henî omîd keno ke sey Munzur Çemî leşkere edebîyatê kurdkî bibê zêde. Labelê sey leşker nênusê.

Ma êdî zanenîme ke erotîzm bîngeyê felsefeyî de zî cayêde girs gêno. Mesela, Marki de Sade û Eugenne Battaille, fîlozofê leşî yê. Ma hîkayanê Roşan Lezgînî de yan zî romano ke Deniz Gunduz newe nuseno de erotîzmî vînenîme. No het ra kêmîya hîkayanê kîrmanckî bena vindî.

**Çimeyî:**

Çem, Munzur, Gula Çemê Pêrre, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul 2007
Çem, Munzur, Gülümse Ey Dêrsim - I, II, III, Özgürlük Yolu Yayınları Îstanbul 2006
Çem, Munzur, Ekmeği de Yaktılar, Pencînar Yayınları, Koln 1997
Çem, Munzur, İsyana Çağrı, Stockholm 1996
Isaiah Berlin, Romantikliğin Kökenleri, YKY, Îstanbul 2007
Haşim Ehmedzade, Roman ve Ulus, Pêrî Yayınları, Îstanbul 2004

# "Emine Ayna soza hînbûna kurdî daye lê..."

AKO MİHEMED

**Rûdaw -** Serokê Enstîtûya Kurdî ya Stenbolê û yek ji rêvebirên Tevgera Ziman û Perwer- deya Kurdî – (TZP Kurdî), Samî Tan, li Stenbolê pirsên Rûdawê yên li ser xabatên wan û rewşa zimanê kurdî li Bakurê Kurdistanê bersivandin.

*Em dixwazin ku tu xwe bidî naskirin*

Navê min yê nivîskariyê Samî Berbang e. Ez serokê Enstîtûya Kurdî ya Stenbolê û herwiha endamê Desteya Rêvebir yê TZP Kurdî me. Min demeke dirêj sernivîskariya Azadiya Welat jî kir.

*Enstitû di sala 1992'an hat damezrandin?*

Belê. Enstîtû di nîsana 1992'an bi pêşengiya rewşenbîrên wekî Musa Anter, Feqi Hüseyin Sağnıç, İsmail Beşikçi, İbrahim Gürgür, Abdurrahman Dürre, Cemşid Bender û gelek rewşenbîrên kurd hat avakirin. Heta roja îro enstîtûyê gelek berhem derxistine, bi taybetî li ser edebiyatê.

*Xwendekarên biyanî, yanî yên tirk ji bo standina agahiyên di derbarê zimanê kurdî tên Enstitûyê?*

Bele, heta niha gelek kes di asta masterê de tên, dipirsin û reportajan li ser kurdî dikin. Pêwestiya wan bi çavkaniyên kurdî hebin, pirsên wan hebin, tên û ji Enstîtûya kurdî dikin.

*Beşikçi çima dûrî we ye?*

2005'an me şev çê kir û me hemû avakerê xwe dawet kirin û me xelat dan wan. Mamoste Beşikçi jî hatibû. Dîsa jî danustandinên me hene, lê ew sarbûna siyasî ku di navbera wî û heraketa siyasî de heye, bandore dike, li me jî dike û ji ber wê ew xwe hinekî ji enstîtûyê jî dur dixê. Lê em mamoste Beşikçi wekî rewşenbîrekî û avakerê vê enstîtûyê dibînin û em nikarin deriyê saziyê jê re bigrin û ne raste jî. Deriyê dilê me û yê saziya me jî ji mamoste re vekiriye.

*Weki ku hûn dizanin heta demeki kurdiaxaftin şerm bû. Niha rewş çawa ye?*

Ji xwe armancekî avabûna TZP Kurdî ew bû ku rê li ber vê rewşê bigire. Ez dikarim bêjim ji sala 1997-1998 û virve ew bandor hinekî şikestiye. Lê asîmîlasyon û oto-asîmîlasyon jî rastiyek e. Ji ber ku hêzên ku dixwazin zimanê kurdî asîmîle bikin, pêşî dixwazin îradeye kurdan, bîr û baweriya wan ya bi ziman, hezkirina wan ya ji bo zimanê kurdî bişkênin. Bi taybetî em dixwazin ku siyasetmedarên kurdan bi kurdî biaxifin, ji ber ku gel wan ji xwe re wekî nimûne digre.

*Piştî vebûna TRT 6, gel dibîne ku dewletê jî televizyonek vekiriye ku bi kurdî ye û êdî kurdî ne şerm e. Bandoreke vê yekê ya baş hebûye?*

Dema ku di sala 2002'an de cara yekê destûra weşana radyo û televizyona bi kurdî hate dayîn, me got ku gavekî erênî, dîrokî ye. Eger dema mirov ji wî alî ve lê dinêrin, bêgûman vekirina TRT 6 gavek baş e. Lê li vê derê tiştek heye, ji aliyê bingeha qanûnî ve ti cudatî pêk nehatiye. Di psîkolojiya mirovan de rehetiyekê çê dike. Lê tabî tiştekî din heye, niha jî rewşekî pêk hatiye ku hê jî siyasetmedarê kurd, rewşenbîrên kurd, ji bo ku bi kurdî diaxifin, ji bo ku bi kurdî dinivîsin û daxuyaniya didin, têne girtinê, ceza li wan tê birînê.

*Çend televizyonên meheli hene ku bi kurdî weşanê dikin?*

Niha mesele li Amedê Gün TV heye. Ji xwe televizyonên mezin jî xwe nadin ber vê yekê, ji ber ku li gor xwe bazara xwe têde nabînin.

*Li dereke din jî heye, ez bawerim.*

Li Colemêrgê dibe hebe, li Batman û Wan jî hinek tişt hene… lê wek ku min got, Gün TV ji ber ku di hilbijartinê de bi kurdî weşan kiribû, hate girtin.

*Niha bi texmîn ji sedî çendê Kurdan bi kurdî qise dikin?*

Ev li gor herêman diguherê. Ez dibêjim li Kurdistanê ji sedî 70-80 bi kurdî diaxife. Lê bi taybetî li bajarên mezin dibe ku rewş hinekî cudatir be, lê li cîhên biçûktir zêdetir jiyan bi kurdî ye. Li metropolan bêgûman rewş hinekî zehmetir e.

*Lê li Stenbolê ji tu dibînê Kurd rûniştine û bi kurdî qise dikin.*

Belê, ew balkêş e. Carna ez dibêjim axafina bi kurdî li Stenbolê ji Amedê zêdetir e. Yanî li Amedê wisa ye, wekî ku tirkî lê rûniştibe, bi taybetî ji bo însanên bajarî, yên ku em bêjin berî sed salan hatine Amedê. Ji bo wan çandeke tirkiyek bi rastî ne tirkî jî, lê tirkiyek teklav, yanî tirkî û kurdî, zimanekî şikestî, zimanekî bajarî bikar tînin. Dema ku tu di kurdî de îsrar dikî, ew dixeyidin jî. Lê li Stenbolê mirov biçe kijan xwaringehê, bi kurdî tiştekî beje, wê garsonekî kurd were, kêfxweşiya xwe nîşan bide, wê xizmeta te bike. Tu biçî kafêyekê dîsa wisa ye. Wekî ku te got li kolanan mirov rastî kurdî tê. Lê dîsa jî ji ber tunebûne derfetên ziman nifşên nû ji ziman dûr dikevin.

*Yanî nifşê berê ji bo zimanê kurdî baştir bû?*

Bêgûman, nifşên berê dizanin bi kurdî biaxifin. Lê tiştekî din yê xeter heye, çandeke wisa di nava malbatan de rûniştiye, bi hevûdu re bi kurdî diaxifin, bi zarokên xwe re bi tirkî diaxifin. Ev tiştekî gelekî xeter e. Niha em di xebata xwe de di serî de li dijî vê têdikoşin, ji bo ku ev bîr û bawerî biguherê. Em dibêjin dema ku zarokek di biçûkîtiya xwe de hînî vî zimanî nebe, piştî ku mezin bû, nabe. Bibe jî, nabê zimanê wî yê rasteqîn.

*Li Başûrê Kurdistanê niha herkes dixwaze ku zarokê wî bi inglîzî bizane. Ev meseleya înglîzî ketiya Tirkiyê, an jî Bakurê Kurdistanê jî?*

Di mejiyê hinek kurdan de, an jî bêtir yên ne polîtîk, di asta jêr de kurdî heye, zimane nava malê. Li jortir, berfirehtir, tirkî ye û ser wê re înglîzî ye. Nihêrtinek wiha heye û ji ber wê jî hewldanek ji bo înglîzî heye. Ev ne tenê di nava kurdan de, ev di nava tirkan de jî wisa ye. Yanî înglîzî ji bo wan tiştekî gelekî mezin e. Ji bo wê yekê hemî dixwazin zarokên xwe bişînin dibistanên ku perwerdehî lê bi înglîzî ye.

*Dibe ku ev yek bondoreki baş ji bo zimanê kurdî ji çê biki, yani xelk êdî fêr dibe ku tirkî ne zimanê cihanê ye?*

Bandoreke baş çawa dikare bike? Di serê gelek kurdan de tirkî pir mezine, di astekî pir bilind de bû. Dema ku wê dibîne, ew bandor dişkê, yanî dibînin ku tirkî jî bi sînor e. Lê dîsa jî bandorekî asîmîlasyonîst jî heye û mirov digihijê wê qenaetê ku bêjê kurdî çiye, tirkî çiye, ya giring înglîzî ye.

*Dema ku xelkê kurdiaxêf zêde bibin, dengê Kurdî jî zêde dibin û ew ji bo DTP'ê ji zor giring e. Di vir de armancên we dighijin hev. Ji bo çi hûn vêyekê nakin rojeva DTP'ê?*

Bêgûman DTP ji vê yekê re ne girtî ye, deriyên wê vekirî ye. Lê mesele ewe, ku pirrê caran rojeva wê ya siyasî diguherê. Mesele di nîsanê de bi sedan rêvebirên DTP'ê hatin girtin. Bivê nevê dive li hemberî vê helwestekê nîşan bide. Dîsa şer gur dibe, an jî nîqaşên çareserkirina pirsa kurdî gur dibin, li gorî wê rojeva partiyê diguherê, lê ya me, rojeva me naguhere. Eger em karibin pêşengiyek rasteqîn bikin, girseya DTP'ê ji vê re vekiriye. Yanî kemasî di vir de di me bi xwe de ye, ne di DTP'ê de ye.

*Ji bo çi we heta niha nekiriye kareki ehlaqi ku parlamenterên Kurd di nava xwe de bi kurdi biaxifin û bi vê yekê kurdi hedî hedî derbasî meclisê jî bibe?*

Li ser vê meselê me gelekî nîqaş jî kir. Bêgûman dema ku ev meseleyên parlamenteriyê hatin pêş, em ne xwediyê wê hêzê bûn ku em di wî warî de diyarker bin, hem di neqandina wan kesan de, yên ku weke parlamenter hatine diyarkirin û hem jî bandorê li ser helwesta wan bikin. Lê dîsa danûstandinên me hene, hem bi rexneyên xwe, hem jî bi pêşniyarên xwe.

*We ev ji parlamenterên DTP'ê re gotiye?*

Belê. Heta hinekan ji wan weke Selahattin Demirtaş û Gülten Kişanak li Amedê demekê perwerdeya ziman girtin. Û hinekên wan di wî wari de gelekî pêşketî ne, wekî Ahmet Türk, Osman Özelik, Sevahir Bayindir. Evna hesasiyeta wan di warê zimanê kurdî de baş e, lê hinek hene di vî warî de hesasiyeta wan kêm e, (wekî Hasip Kaplan, Sırrı Sakık (ya Sırrı dîsa hinekî baş e), Pervin Buldan, Aysel Tuğluk û kurdî jî baş nizanin.

*Hûn li ser vê meseleyê wan rexne dikin?*

Belê, em wan rexne jî dikin û min ev gelek caran di rojnamê de jî nivîsandiye. Yanî ew divê van kêmasiyan ji holê rakin, divê hinî kurdî bibin. Heta hevseroka DTP'ê Emine Ayna mecbûr ma ku di salvegera Azadiya Welat de sozê bide ku heta saleke din hînî kurdî bibe, lê mixabin pratîk tiştekî dine û hê jî hîn nebûye. Lê li pêşperî bi hezaran însan got ku sala bê, di salvegera Azadiya Welat de, ewê bi kurdî xitabî wan bike.

*Ew serokşarederên ku derketine, we zextek li ser wan ji çêkiriye ku ew ji bi kurdi bipeyivin?*

Belê, mesele di wî wari de Osman Baydemir gelekî baş e, di hemû waran de gelek xebatên xwe de kurdî dimeşîne. Wekî din Abdullah Demirbaş dîsa bi heman awayî. Ji vanên ku nû hatine hilbijartin, geleken wan wiha ne. Mesele yê Wanê jî Bekir Kaya, hevalekî ez ji berê de nas dikim, heta demekê nûnertiya Azadiya Welat li Wanê kiriye.

*Qet bandore televizyon, radyo û malperên ji Başûr ji bo ku xweşbûn û geşbûna zimanê kurdi li ber çavên nifşên nû zêde bibe, heye?*

Yanî bivê, nevê hinek bandorek wan heye. Lê zêdetir meyla Bakur li ser ROJ-TV û MMC ye. Di van demên dawî de ROJ-TV sateleyta xwe guhert û niha gelek kes nikarin li televizyonên Başûr temaşe bikin. Lê meseleya lehçeyan jî heye. Lê dîsa jî gelek însanan bi rêya televizyonên sateleyta têkiliya wan bi soranî re jî çê bû, qet nebê dema însanan guhdarî dikir, dizanîbûn mijar çiye, qala çi dike. Ji wî alî ve jî baş bû.

*Yani ew dibînin ku kurdi bûye zimane dewleteke jî.*

Ji xwe ew tê zanîn, ew di mejiyê gel de rûniştiye. Dema mînak tên dayîn, dibêjin ji xwe li Başûr zimanê perwerdê ye, zanîngeh hene

*Mesela ziman ji bo Ewrûpa jî esas e. We hiç têkilî li gel saziyên Yekitiya Ewrûpayê re danani ku karibin zexteke li ser Hikûmeta Tirkiyê bikin?*

Bi rastî ew têkilî û danûstandinên me zêde çê nebûne. Carna heyetên wan tên, em rewşê ji wan re dibejin, lê hê ji têkiliyekî domdar, bi rêkûpêk, sistematîk di navbera me de çê nebûye. Li ser xebatên diplomatik me hin biryar jî standine, lê hej nekitine pratîkê.

*Niyetek we tune ku hûn raportek li ser rewşa zimanê kurdî li Bakurê Kurdistan û Tirkiyê çêkin û bidin Yekitiya Ewrûpayê?*

Belê, hinek xebatên me hene, lê me nekirine pratîkê. Lê meseleyeke din jî heye, Yekîtiya Ewrûpayê di mesele zimanê kurdî de pir zêde esas tevnagere.

*Li Başûrê Kurdistanê Koroyê Zanyariyê hebû, navê wê guhertiye bûye Akademiya Kurdî. Pêwendiyeki we bi wan re heye?*

Bi rastî bi Başûr re jî, tevî hemû hewldanê me, pêwendiyekî me yê bi rêkûpêk, sistematîk pêk nehatiye. Herçiqas beşdarî di festîvalan û wekî din jî çê dibin jî, lê têkiliyên ku hûn bahs dikin çê nebûye. Mesele ji Akademiya Kurdî de ez hinek kesan nas dikim, wekî Mueyed Teyîb û çendên din, lê ev nagihijê wê astê ku em karibin bi hevre projeyan birêve bibin.



*Serokê Enstîtûya Kurdî ya Stenbolê Sami Tan* *(Wêne: Rûdaw)*

## Piştî 29 salan

# Hêvî bi riya Facebookê gihîşt malbata xwe

Her tişt wek xewnekê dest pê kir û weke xewnekê jî bi dawî hat. Xwediyên bûyerê jî bi çîroka xwe bawer nakin.


(Fotomontaj: Rûdaw)

*Amal li gel bavê xwe Ehmed*

DÎLBÎXWÎN DARA

**Bonn -** Keçeke kurd piştî 29 salan bi riya Facebookê rastî malbata xwe ya wendayî hat!

Xortê kurd Ehmed ji bajarê Qamişlo ye. Ji bo ku debara xwe bike, berê xwe daye Libnanê. Di navbera 1977-1980'an de, ji bo ku dêbavê xwe xwedî bike, bi birayê xwe yê mezin, Bavê Welat re ji Libnanê berê xwe dide Kuweytê. Li Kuweytê, di sala 1980'an de Ehmed keçeke bi navê Kleopetra Al Afyonî nas dike. Eşqeke mezin di navbera wan de dest pê dike û dizewicin. Piştî ku pirsgirêkên wî yên rûniştinê derdikevin, Ehmed vedigere Libnanê. Demeke dirêj di ser re derbas nabe, nameyek ji Ehmed re tê ku jina wî ducan e, piştre keçek jê re çêdibe, navê keça wî dikin Amal, ango Hêvî. Ehmed bi hêvî ye ku wê û Kleopetraya xwe bibîne. Lê belê ew hêvî pêk nayên. Ne bav keça xwe dibîne, ne jî keç bavê xwe dibîne. Ji bo dîtina wan Ehmed gelekî hewl dide, lê belê nikare vîzeya Kuweytê bistîne.

Di sala 1982'an de dagira Îsraîlê ya ser Libnanê dest pê dike. Ehmed û malbata xwe ji neçarî vedigerin Qamişlo. Ew sal pêwendiya navbera Kleopetra û Ehmed qut dibe. Di sala 1984'an de li Qamişlo pêwendiya Ehmed bi PKK'ê re çêdibe û ew tevlî PKK'ê dibe. Ew êdî kadroyekî rêxistinê ye û navê wî Semîr e. Di sala 1985 de di qezayekê de jiyana xwe ji dest dide. Gora wî li Libnanê tê çêkirin. Wê demê PKK kampeke taybetî bi navê wî çê dike: Kampa Şehîd Ehmed.

Birayê Ehmed, Bavê Welat, gelekî hewl dide ku jinbira xwe Kleopetra û biraziya xwe temîn bike, lê belê hemû hewldanên wî bêçare dimînin. Bavê Welat çîrokê wiha didomîne: "Min dixwest biraziya xwe Amal bibînim. Weke ku her roj Ehmed ji min re bêje, ka keça min, ka Amal!" Bavê Welat hewl dide ku bi rêya Xaça Sor li Amalê bigere. Xaça Sor hinek sozan dide lê belê pêk nayne. Sal derbas dibin. Êdî Bavê Welat li Swêdê ye, êdî Qamişlo, Libnan, Kuweyt şev li pey xwe hiştine. Lê belê di serê wî de pirsa "wê çawa keça birayê xwe bibîne..." zindî dimîne.

Di dawiyê de berê xwe dide teknolojiyê: "Çima ez li ser Facebookê banga dîtina Amalê belav nakim?" Radibe li ser Facebookê bangê diweşîne. Piştî demekê, di Tîrmeha 2009'an de, keça xaltîka Amal bersîva Bavê Welat dide. Ew xwe dide nasandin ku keça xaltîka Amal e. Bavê Welat êdî rêya dîtina biraziya xwe dibîne. E-maîla Amal peyda dike û pêwendî dest pê dikin. Amal, ku bi salan e li bavê xwe digere û tiştekî di derheqê bavê xwe de nizane, niha li Amerîka li bajarê New Yorkê dijî. Yekser ji apê xwe re dibêje ku ew dixwaze biçe Swêdê wî bibîne.

Amal roja 20'ê mijdara 2009'an berê xwe dide Danîmarkayê. Malbata Ehmed weke ku biçin daweteke, lê bi girî diçin pêşwaziya Amal. Bavê Welat dibêje: "29 sal in li wê digerim, min soza dîtina Amal dabû birayê xwe. Êdî ji kêfxweşiyê nizanim çi bikim, tenê dikarim bigirîm..." dest bi girî dike, digirî û ken û girî tevlî hev dibin. Amal jî dibêje ku weke ew ji nûh ve ji diya xwe çêbûbe, bi salan e li malbata xwe digere, li bavê xwe digere, ji ber ku wê nizanibû bavê wê kî ye, ew di nava êşeke wicdanî de bû.

Amal niha bi riya Messengerê û WebCamê bi mirovên xwe yên li Qamişlo re her roj di pêwendiyê de ye. Ewê di demeke nêzîk de biçe serdana Qamişlo. Xeyala wê ew e ku biçe gora bavê xwe bibîne. Temenê Amalê niha 29 sal in, ew li New Yorkê dijî, zewiciye û weke muhasîb kar dike.



*Bavê Welat û biraziya xwe Amal - (Wêne: Rûdaw)*

## Rûdaw li Mêrdînê ye:

# "Rûdaw hemû Kurdistanê tîne cem hev"

"Bi rastî em ji mêj ve li benda rojnameyeke kurdî bûn, ku xelkê fêrî rojnameyan bike. Rûdaw baweriyê dide xwendevanê xwe, wan cidî digire."

SÎRWAN H. BERKO

**(Mêrdîn)** – Li Mêrdîna kevn du kolanên sereke hene: Ya yekem Mêrdîna kevn bi ya nû ve girê dide; ya din jî kolana bazara kevn e. Çendîn kurd jî di vê bazarê de ciyê xwe digirin, lê di vê kolanê de zimanê erebî serdest e. Di nav vê xircira erebî de, çend gavên derenceyeke bi jor ve mirov dibe ciyekî kurdewarî: Café Leylan. Dema mirov nîvê derenceyê derbas dike, ji deriyekî li ser destê çepê dengê Ciwan Haco dikeve guhan: "Keçikê de were, delalê de were..." Di odeya li ser destê çepê de çend kovar û rojnameyên bi zimanên kurdî û tirkî li bende ne ku bên xwendin: Çirûks, Nûbihar, Kovara W, Le Monde Diplomatique, Rûdaw û yên din. Mamoste Tehsîn bi kêfxweşî balê dikişîne ser Rûdaw û Le Monde Diplomatique. Nivîsgeha Rûdawê li Ewrûpayê çend dane ji hejmarên dawî şandine Mêrdînê. Ji ber ku li Mêrdînê cihek tune ye ku rojname û pirtûkên kurdî lê bên firotin, Café Leylan bi vî karî radibe. Tehsînê 32 salî berî salekê li gel hevalê xwe Mistefa, Café Leylan vekir. Tehsînê tim rûbiken dibêje ku wan xwest ciyekî xweş vekin ku "bêhna kurdî jê bê." Bi rastî jî li her qorziyeke vê qehweyê bêhna kurdî tê. Hemû odeyên wê bi motîvên kurdî hatine xemilandin. Mirov li vê derê ne tenê dikare li ber muzîka kurdî bi çayekê yan qehweyekê xwe hinekî rehet bike. Hejmareke mezin ji pirtûkên kurdî li bendî xwendinê yan jî kirînê ne.

Tehsîn rûpelên Rûdawê vedike û bi balkêşiyeke mezin dixwîne. Ew dibêje ku wî Rûdaw di înternêtê de dixwend. Wî ji Rûdawê hez kiriye û kêfxweş e ku ew êdî li Mêrdînê peyda dibe. Tehsîn berdewam dike û dibêje: "Bi rastî em ji mêj ve li benda rojnameyeke kurdî bûn, ku xelkê fêrî rojnameyan bike. Rûdaw baweriyê dide xwendevanê xwe, wan cidî digire." Tehsîn eşkere dike ku Rûdaw ji aliyê xwendevanan ve bi şêweyekî erênî ve hatiye pêşwazîkirin û gelek kes hene ku dixwazin wê abone bikin: "Lê divê Rûdaw di dema xwe de bigihê me."

Selmet Güler yek ji xwendevanên Rûdawê ye. Kurdê 45 salî bazirgan e, ew wekî wênegir ji bo kovara navdar "National Geographic" dixebite. Li gorî Güler rojnameyên kurdî "niha lokal in, nerîna wan teng e, ne neteweyî ne." Ew dibêje ku Rûdawê hêviya wî di rojnamegeriya kurdî de xurt kir. Ew giring dibîne ku Rûdaw "herçar perçeyên Kurdistanê tîne cem me." Helbestvan Çiya Mazî jî dibêje ku wî gelek rojnameyên kurdî xwendine, "lê min ta niha rojnameyeke ewqas bi kalîte nedîtiye." Ji bo wî giring e ku nûçe û raport "ji siyasetê dûr bin, ne li gorî berjewendiya partiyekê bin." Çiya Mazî baş dibîne ku Rûdaw "fikrên her insanê hembêz dike. Ta niha min tiştek wiha nedîtiye. Ez bi vê rojnameyê pir kêfxweş in. Ew valahiyeke mezin dadgire."

Ji bilî Rûdaw herweha Le Monde Diplomatique jî li Café Leylan peyda dibe. Tehsîn dibêje ku vê rojnameyê bêtir bala xwendevanan kişandiye: "Çimkî ew bêtir naskirî ye û xwendevan hîn nizanin bê Rûdaw girêdayî kîjan grûbê ye." Tehsîn diyar dike ku divê Rûdaw pêşî baweriya xwendevanan qezenc bike. Ji bo wî ev yek ne zêde zehmet e: "Çimkî ez bi xwe nizanim bê ez wê girêdim kîjan grûbê. Ev jî nîşana serkeftina Rûdawê ye."



*Di nav pirtûk û rojnameyên kurdî li Cafe Leylan Rûdaw jî heye.* (Wêne: Rûdaw)

